Bidestveanîna mafên neteweyî
yên gelê Kurd di çarçoveya
Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 119
23'ê Îlona 2009
Buha: 150 Tûmen

agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Di Heftemîn Civîna Komîteya Navendî Ya PDKÎ De, Rewşa Siyasî A Îranê û Pirsa Kurd Hat Nîqaşkirin**

Rûpela 2



***Şehîdê nemir Dr. Sadiq Şerefkendî:***

# XEBATA ME BI BEŞDARÎ Û PIŞTGIRIYA GEL SER DIKEVE

17ê Îlona 2009an, 17hemîn salvegera terorkirina rêberê navdar yê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî li Berlînê, bi destê terorîstên Komara Îslamî a Îranê bû.

Bi vê hilkevtê çalakiyên bibîranîn û rêzgirtin ji wan şehîdên rêya azadiyê li gund û bajarên Rojhilatê Kurdistanê, binkeyên PDKÎ û çend welatên derve hatin lidar xistin.

Agirî bi vê hilkevtê paşkoyek taybet amade kiriye...

## Peyama Pîrozbahî Ya Mistefa Hicrî Bi Hilkevta Cejna Remezanê



Hevwelatiyên hêja!

Bi hilkevta cejna pîroz a Remezanê ve, ez pîrozbahiyên herî germ pêşkêşî malbatên şehîdan, xuşk û birayên me ên musilman li Kurdistanê, bi taybet li Kurdistana Îranê dikim.

Hêviya min silametî û jiyaneke tejî cejn û xweşî bo hemûyan e.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**
**19.09.2009**
**28.06.1388**




Poster: Serbest

**Daxuyaniya PDKÎ derbarê sala nû ya xwendinê...** 6



**Gurên Dev Bi Xwîn** 7



**Maf û Berpirsiyarî** 9



# Daxuyaniya Bidawîhatina Civîna Heftem Ya Komîteya Navendî Ya PDKÎ

Em bo agahdariya raya giştî radigehînin ku heftemîn civîna berfireh a Komîteya Navendî ya PDKÎ, hilbijartî ya kongreya çardehem, roja sêşem, 15ê Îlona 2009'an, demjimêr 9:30 sibê, bi beşdariya endamên rêberiya partiyê, bi ragirtina deqîqeyek bêdengiyê bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên partiyê û bi taybet çar şehîdên nû ên partiyê dest bi karê xwe kir.

Di destpêka karê civînê de, Sekreterê Giştî yê PDKÎ, rêzdar Mistefa Hicrî, baseke siyasî derbarê bûyerên vê dawiyê ên siyasî yên Îran û herêmê di heyamê navbera du civînên PDKÎ de pêşkêş kir û beşdarên civîna Komîteya Navendî di wê basê de beşdariyeke çalak kirin û siyasetên PDKÎ di wê derbarê de destnîşan kirin.

Di beşek ji wê basê de, li ser bûyerên Îranê, bi taybet bûyerên têkildarî binav hilbijartinên gera dehem a Serok Komariyê li Îranê bal hatibû kişandin û îşare bi wê yekê hatibû kirin ku ligel pîlanên rejîma Komara Îslamî bo rakişandina bala xelkê bi mebesta beşdarîkirin di wê binav hilbijartinê de, siyaseta partiyê derheqî baykutkirina wê şanogeriyê, helwêsteke durist û bicih bû.

Civîna Komîteya Navendî ya PDKÎ derbarê nîşandana nerazîbûnên piştî ragihandina encama wê binav hilbijartinê, bawer bû ku ew xuyakirina nerazîbûnan encama nerazîbûnên pengxwarî ên çendîn salî yên xelkê bûye û PDKÎ di daxuyaniyeke Deftera Siyasî de serkutkirina xwenîşandanan û girtin, zindanîkirin û kuştina xwenîşanderan ji aliyê rejîmê ve mehkûm kir û her di cih de piştgirî ji daxwazên xelkê bo gihîştin bi azadî û demokrasiyê da xuyakirin. Komîteya Navendî ew helwêsta Polîtburoyê wek helwêsteke durist zanî. Civîna berfireh a Komîteya Navendî ya PDKÎ li nirxandina bûyerên piştî binav hilbijartinên Serok Komariyê û şirove û analîzkirina wan xwenîşandanan û xuyakirina nerazîbûnan ku bû sedema serkut, zîndanîkirin û kuştina hejmarek berçav a xelkê, gihîşte wê encamê ku ev bûyer bûn sedema:

- Berfirehtirbûn û kûrtirbûna dijberiya navbera baskên rejîmê
- Eşkeretirbûna rûyê rastîn yê rejîmê bi taybet di wî warî de ku guhertin û reform di wê rêjîmê de çê nabin û derfeta guhertinê nade
- Xuyakirina nerazbîbûna kom û komeleyên navneteweyî û dewletên Rojavayî beramberî riftara rejîmê digel nerazî û xwenîşanderan
- Rêveçûna xwenîşandana milyonî a xelkê bo xuyakirina nerazîbûnê li dijî rejîmê bo yekemîn car li pey hatinserkara rejîma Komara Îslamî

Ligel wan encaman, çend xalên lawaz û nigatîv di wan xwenîşandana de derketin rojevê ku ên herî girîng pêkhatîbûn ji:

- Nebûna rêberiyek demokrat bo rênîşanî û yekgirtîtirkirina xelkê nerazî
- Ew dirûşm û xwestekên ku bo xwenîşandanan dihatin diyarîkirin, di guhertina cihê Mûsewî û Ehmedînejad de dihatin berteskkirin, ku herdu mohreyên rejîmê bûn û bo cihgirbûn û binecihbûna rejîmê kar dikirin.
- Hemû kêmasiyên rejîmê di Ehemdînejad de dihat kurtkirin û bi awayekê rejîm bêtawan an kêmtawan dihat nîşandan.
- Dirûşm û daxuyaniyên rêberên neraziyan bo pejirandina dubare a Komara Îslamî û bi gotina wan bo vegerandin bo serdemê Xomeynî dihatin gotin.
- Beşdariya bertesk a texa ronakbîr û xwendekar di meşan de û tevlînebûna neteweyên stemjêkirî ên Îranê û kêmaniyên olî, kedkar, bazarî û xelkê xizan û belengaz yê bajarê Tehranê, ji ber ku xwestekên wan çîn û texên civakê û netewan di dirûşmên xwenîşandanan de reng neveda.

Heftemîn civîna Komîteya Navendî ya PDKÎ bi şirove û dahûrandina pêvajoya bûyeran û siyasetên rejîmê, bawer bû ku bi sedema tirsa bêrade a rejîmê ji hêza xelkê, di pêşerojê de tundûtûjî xurt û dijwartir dibe û liv û çalakiyên reformxwazên hikûmetî dê pirr kêmrengtir bibe û beşek dê tevlî hêzên rejîmê bibin. Zext û zordestiya li ser xwendekar, rojnamevan û kesayetiyên olî ên dijberên rejîmê dê zêdetir be û tê çaverêkirin, tesfiyekirineke din ji mamsota û xwendekarên zanîngehê rêve biçe û guhertin di deqa waneyên zanistên mirovî û pirtûkên zanîngeh û xwendigeha paş navendî de pêk were. Ev helwêsta rejîmê renge bibe sedema wê yekê ku di kurt dem de xelk ji ber tirsa canê xwe newêrin dijberiyên xwe bi berfirehî bidin xuyakirin û dê bêdengiyeke rêjeyî bi ser welat were zalkirin û rejîm bi wê yekê dilxweş be ku her tişt bi dawî hatiye, lê di dirêjdem de, nerazîbûnên pengxwarî ên xelkê dê berfirehtir û bihêztir bin û bêzarî ya Meleyên dijî desthilatê dê kûrtir reh û rîşalan dakute. Pirsgirêkên aborî di rê de ne, ew pirsgirêk dê kirîzên rejîmê kûrtir bikin û berî pê hatina gellek tiştên neçaverêkirî ên din û çaresernebûna wan pirsgirêkan, derfeteke guncaw û jêhatî bo berxwedana xurt û berfireh a xelkê digel rejîmê pêk tînin. Di wê demê de jî, serkevtina xelkê û bi encamgihîştina tekoşîna wan, girêdayî bi yekgirtîbûana xelkê di bin rêberayetiyek demokrat de û hebûna bername û armancên demokratîk bo derbasbûn ji rejîma Komara Îslamî û hatin rojeva sîstemeke demokratîk û bicihanîan azadiyê ye.



Civîna Komîteya Navendî di beşekî din a behsên siyasî de, bal kişande ser bûyerên Kurdistana Îraq û Turkiyê û derbarê Kurdistana Îraqê, rêveçûna hilbijartinên parlamen û Serokatiya Herêmê wek ceribîneke demokratîk û serkevtî nirxand. Derheqî bûyerên Kurdistana Turkiyê û ew basên nû ên ku ji aliyê dewleta Turkiyê ve hatine holê, civîna Komîteya Navendî ya PDKÎ bawer bû ku herçiqas ew hatinerojeva pirsa Kurd, hemû mafên Kurdan li Turkiyê dabîn û ewle nake, lê di wê proseyê de ger Turkiye li ser soz û qewlên xwe pêdagir û biîsrar be û ji bo cîbicîkirina wan gavên micid bavêje, dikare bibe destpêka çareserkirina aştiyane û demokratîk a pirsa Kurd li Turkiyê.

Beşeke din a karên civênê bo nirxandina tekoşîna PDKÎ û bas li ser rapora karê hinek beşên partiyê hatibû terxankirin û piştî nirxandina tev alî, Komîteya Navendî gihîşt wê encamê ku:

- Piştî kongreya çardehem a PDKÎ ku di bin dirûşma "gelîtirkirina xebatê" de hat lidarxistin, tekoşîna partiyê di rêya bicihanîna wê dirûşmê de pêşveçûneke berçav bi xwe ve dîtiye û Komîteya Navendî tevî pejirandin û erêkirina gavên avêtî bo gelîtirkirina xebatê û berdewamiya xebata sivîl di Kurdistana Îranê de, biryar da ku bernameya baştir û berfirehtir bo herçiqas zêdetir a beşdarîkirina tex û qatên civaka Kurdistanê di xebata neteweyî – demokratîk û azadîxwazane de darêje û rêve bibe.
- PDKÎ baweriyeke kûr bi wekheviya mafê jin û mêr di nav malbat û civakê de heye û di kongreya çardehem a PDKÎ de, hinek gavên girîng bo beşdariya jinan di nav partiyê û xebatê de û herwiha di nav rêvebirina têkoşînan de hatine avêtin û civîna heftem ligel tekez û pêdagirî li ser wan pêngavan, biryar stand gavên zêde bo afirandin û pêkanîna derfeta beşdarî ya çalakane a jinan di xebat û şoreşê de bavêje.

Heftemîn civîna Komîteya Navendî ya PDKÎ, di beşa dawî a karên xwe de, rapora kar û çalakiyên rêxistinên sivîl wek Yekîtiya Jinan, Ciwanan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ên ser bi PDKÎ nirxand û tevî pejirandina kar û tekoşîn û dubarekirina piştgirî ji wan rêxistinan, xalên bihêz û lawaz ên çalakiyên wan saziyan xiste berbas û destnîşan kir û bi wan sê rêxistinên sivîl rasipêrî ku bi hevahengî û hevgaviya zêdetir digel rêxistina partiyê, di warê pêwîst û têkildar de gavên baştir bo kar û têkoşîna berfireh û baş biavêjin. Heftemîn civîna Komîteya Navendî, piştî 4 rojan karê berdewam û bas û analîz û dahûrandinek kûr û berdewam, roja înê, 18ê Îlona 2009'an, demjimêr 18ê êvar, bi nirxandina hemû mijaran û dayina biryarên pêwîst û dariştina bernameya karê pêşeroja partiyê, dawî bi karê xwe anî. Di dawiyê de Komîteya Navendî ya PDKÎ, cejna Remezanê ji hemû Musilmanên Kurd pîroz kir û hêviya jiyaneke aştiyane û serbilindane bo hemû netewa Kurd û hêviya serkevtinê ji bo hemû azadîxwazan xwest.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Komîteya Navendî**
**19.09.2009**
**28.06.1388**

# Kabîneya Weliyê Feqîh



**Azad Kurdî**

Şanoya dehemîn gera hilbijartinên Serok Komariyê di Îranê de, derfetekî herî baş bû ji bo ku rêberên Wilayeta Feqîh li gor wan guhertinên ku di warên cur bi cur de di civaka Îranê de pêk hatine, hinek taktîk û komployên nimayişî bo nîşandana rûyekî cuda ji salên derbasbûyî û heta azad û demokratîk!! ji rejîma Wilayeta Feqîh bigrin pêşberî xwe, ku di wî warî de bi rastî hoste û xibre ne û karîn heta qasekî wê armanca xwe bimeşînin. Lewra çend rûbirûbûn(munazire)ên televîzyonî û dana derfetekî zêde bi reformxwazên hikûmetî bo propagandayê, çalakî û tevgerên berfireh ên nîşandana nerazîbûna xelkê li dijî encama hilbijartinê û sextekarî ya eşkere di prosesa hilbijartinan û piştre belavkirina civînên Meclîs Şêwra Îslamî a Îranê bo nirxandina jêhatîbûna wezîrên pêşniyarkirî ên Ehmedînejad bi awayekî zindî ji medyayên rejîmê, çend xalên balkêş ên wê dewreya şanogeriya sîstema Wilayeta Feqîh a Îranê bûn. wan karîn bi başî manoran li ser bidin û bi armanca parastina rejîma xwe, sûd û fêdeyê ji wan senaryoyan bistînin.

Berî destpêkirina şanogeriya hilbijartinan, karbidestên Komara Îslamî çend rûbirûbûnên televîzyonî bi navbera her 4 berbijarên destnîşan û bêjînkirî di nav 475 kesan de organîze kirin û wan bi girtina hinek rexneyan ji hev, xwest jestek demokratîk bidin xwe û bi wî karê xwe, xelkê û raya giştî bixapînin û wiha nîşan bidin ku guhertin di çarçoveya wê rejîmê de çêbûne û qonaxekî nû di temenê wê rejîmê de destpê bûye! Di halekê de ku di sîstemên demokratîk de ku demokrasî cihgir bûye, ew hevrexnekirina berbijarên hilbijartinan pêvajoyekî normal û sirûştî ye. Lê ew kesayetî û hêzên ku pêkhateya daxistî û fend û fêl û xapandinên rêberên rejîma Komara Îslamî baş nas dikin, her zû ev proses wek senaryoyek rûyekî hesibandin û piraniya wan hilbijartin baykut kirin. Encama hilbijartinan jî ew rastî derxist holê, ji ber ku biryarder û diyarîkerê sereke di wê rejîmê de, Weliyê Feqîh e û Xamineyî ji kîjan mohreyî re hez bike û bi meslehet bizane wek serkeftî destnîşan dike û radigehîne, di halekê de ku binaw hilbijartin rêve birine û xelkê deng daye!

Berevajî wan kesayetî û aliyên ku li hundir û derveyî Îranê bi hinek soz û wadeyan hatibûn xapandin, wan bi şirove û dahûrandinek kûr û dûr ji propagandaya bask û aliyên rejîma olî a Îranê ku tenê bo rakişandina zêde a xelkê bo ser sindoqên dengdanê hewl didan, temaşeyî prosesê dikirin, bawer bûn ku Ehmedînejad dê ji aliyê Weliyê Feqîh ve were destnîşankirin û me dît ku dengê xelkê ne diyarker e, belku



biryar, hez û xwesteka Xameneyî ye ku diyarî dike kî bo çar salên din dibe rêveberê kartonî yê desthilata wî ya dîktatorane. Encama dehemîn şanogerî ya Komara Îslamî û bûyerên li pey ragihandina encamên hilbijartinê, berevajya naveroka wan rûbirûbûnan bo raya giştî selimand.

Li vir pirsek derdikeve holê, ger ew feza û rewşa vekirî û azadiya gotinê pûç û rûyekî nebû, çima piştî ragihandina encama hilbijartinan û nerazîbûna sivîl û aştîxwazane a xelkê li hember sextekarî ya eşkere a rêberên wê rejîmê, kete ber êrîşa hovane a hêzên dîktatoriyê û di yek şev de dubare wegeriyan ser metodên qirker û tevgerên xwe yên berê?! Ji ber ku ew hesaba xwe baş dizanin ku ger derfetekî biçûk jî li Îranê pêk were, xelkê bêzarbûyî yê Îranê ji sî sal desthilatdarî ya wan bêdeng nabin û ew jî nikarin meş, xwenîşandan û rexneyên pirr biçûk û heta tevgerekî sivîl jî tab bikin û bersiv û mantelîteya wan kuştin, girtin, îşkence û qirkirin bûye.

Piştî qirkirina bêrehmane a xwenîşandanên xelkê nerazî yê Îranê li hember sextekarî di hilbijartinan de, Xameneyî ku gellek bilez bû Ehmedînejad bike Serok Komarê sîstema xwe, navbirî rasipêrî ku kabîneya xwe pêk bîne. Ehmedînejad jî 21 wezîr bo postên kabîneya xwe ji Meclîsa Şêwra Îslamî re nasand, karekterê wezîrên pêşniyarkirî ên Ehmedînejad xelkê hundirê Îranê û raya giştî a cîhanê matmamyî kir. Kabîneyek ku karekterên herî zêde yên wê leşkerî û ser bi dezgehên ewlekarî û pasdarên nêzîk Weliyê Feqîh bûn. Ji aliyekî din kesanek neşareza, bêazmûn û nejêhatî bûn û ji wan re tenê pîvana nêzîkbûn û sozdarbûna wan kesan giring bûye, ne fakterên zanebûn, jêhatîbûn û şarezayî û azmûna rêvebirinê û wd... . Bi taybet danîna Pasdar Ehmed Wehîdî wek Wezîrê Parastinê ku Înterpol wî ji ber beşdarî kirin di teqandina Navenda Cihûyan li bajarê Bones Ayresê di sala 1994'an de dişopîne û dana dengê herî zêde bo navhatî di Meclîsê de peyamek siyasî bo cîhanê bû. Herwiha danîna Mistefa Mihemed Necar wek kesekî leşkerkî bo posta Wezareta Navxwe, peyamekî din ya ron û eşkere ye bo xelkê, ji bo mîlîtarîzekirin û ewlehîkirina rewşa hundirê welat. Di vê qonaxê de rejîmê dubare dest da xapandin û fêlbaziyekî din û civînên Meclîsa Şêwra Îslamî derbarê nirxandina jêhatîbûna wezîrên pêşniyarkirî ên Ehmedînejad ji medyayên rejîmê bi taybet kanalên televizyonî ku di bin biryar û çavdêrî a Weliyê Feqîh de rêve diçin, bi awayekî zindî weşandin û di wan çend rojan de gellek rexne raberî dewleta berê a Ehmedînejad û wezîrên wî hatin kirin, heta ku wisa nîşan bidin wezîr di bin tîrêja nirxandin û analîzkirina nûnerên Meclîsê de derbas dibin, piştre dest bi kar dikin!

Di destpêkê de piraniya xelkê û çavdêrên siyasî bawer bûn ku pitirî 10 kes ji 21 wezîrên pêşniyarkirî dengê baweriyê ji meclîsê wernagrin, heta gellek nûnerên Meclîsa Şêwra Îslamî jî ew dîtin û nerîn dianîn ziman. Lê her wek dihat çaverêkirin û heta Mihemedriza Bahuner yek ji nûnerên kevneparêz ên rejîmê û ser bi desthilatê jî eşkere kir, biryar û bandora Xameneyî bû ku wezîrên kabîneya dehem hilbijartin, ne dengê serbixwe yê Nûnerên Meclîsa Şêwra Îslamî! Di halekê de ku çend rojan nîqaş li ser kêrhatîbûna wezîrên pêşniyarkirê ên Ehmedînejad hat kirin, lê dana dengê bawerîdana nûnerên meclîsê bi 18 wezîr ji 21 wezîrên pêşniyarkirî yên Ehmedînejad di bin bandor û xwesteka Weliyê Feqîh de bû. Ger 2 ji wan kesên redkirî jin nebûnaya, wan jî dê deng bistanda. Lewra derket holê ku belavkirina civînên nirxandina jêhatîbûna wezîrên pêşniyarkirî ên Ehmedînejad bi awayekî zindî ji medyayên rejîmê, nemaze kanalên televizyonî bo dema çend rojan senaryoyekî din a Komara Îslamî ji bo xapandina raya giştî bû û eşkere bû û tu gumanek nehişt ku di sîstema Komara Îslamî de her tişt divê li gor dilê Weliyê Feqîh be û biryarderê serke ew e û kabîneya nû a Ehmedînejad di rastî de kabîneya Weliyê Feqîh e.

# Aloziyên Yemenê, Kêmkirina Givaşan Li Ser Xwe Yan Hinartina Şoreşê



**Selîm Zencîrî**

Rejîmek di bîr û hizra hinartina şoreşê û usûl û bihayên wê de ye ku îdiaya cîhandagiriyê bike û bixwaze utorîtê bi ser hemû cîhanê bike. Rejîma Komara Îslamî a Îranê jî yek ji wan rejîmên dîktator û pawanxwaz e ku ligel hatine ser kar a xwe, ramana hinartina şoreşê bo derve darişt û kire armanc û stûn û bingeha sereke û eslî ya siyaseta derve ya xwe. Di çarçoveya vê dirûşmê de Şîî meseb ku di cîhana Îslamî de kêmanî bûn, bêxeber û bêhay ji siyasetên têkderane yên rejîmê, ketine bin bandor û givaşên vê şoreşê. Komara Îslamî jî karî bi karta mesebî ve mifaha xirab ji vê hesta wan bistîne û meremên pîs û siyasî yên veşartî yên xwe di deverê de ku di rastî de hinartina terorîzm û Fendemintalîzma Îslamî bû, bimeşîne. Di pêvajoya vê siyasetê de dest bi çêkirina rêxistinên nepenî, navendên bi nav ayînî, çandî¸ rewşenbîrî û xêrxwazî di deverê de kir û herweha ji rêya wan navend û kompaniyayên bazirganî yên xwe ve, karî wan weke alavekê li dijî hikûmetên deverê bikar bîne, ji bo ku hêjmonî û desthilata xwe bi ser cîhana Îslamî û erebî bihêztir bike. Herwiha her yek ji wan jî weke kartek givaşê di hevkêşeyên siyasî de bi vêc û berjewendiya xwe bi kar bîne. Vêca ji Îraq, Efxanistan û Lubnanê ve bigre heya digihîje Misr û welatên din yên Afrîqayî...

Herwiha ji aliyê dinê jî li dema tengavî û givaşên herêmî û navnetewî yên zêdetir li ser xwe, bikare bi bikaranîna her yek ji wan kartan, bîr û raya giştî berxwar û ji rê derbixe û zextên li ser xwe hilde yan kêmtir bike. Her bi heman şêweyê niha em dibînin ku Komara Îslamî ya Îranê ji ber siyasetên biyom, pêpeskirina mafên mirovan û bernameya navikî ya xwe ketiye bin dorpêç û givaşên cîhanî. Lewre di hewla peydakirin û bikaranîna kartek din de ye bo bi nav gotûbêjên bi Rojava re, herwiha hederdana demê bi qazanca xwe û kêmkirina givaş û zextê li ser xwe dizane Lewre piştî ewqas maytêkirin, kirîz afirandin û xurtkirina tundûtûjiyan li Îraq, Efxanistan, Lubnan û welatên din yên deverê û herwiha xapandina rojava li dor bernameyên navikî yên xwe, vê carê Komara Îslamî welatek din li deverê bi navê "Yemen" weke qada nû ya destwerdana xwe hilbijart.



**Çima Yemen?**

* Ji ber vê ku Yemen bi hilkevta coxrafiyayî ya xwe di niqteyek stratejîk a şaz de cih girtiye û xala pêwendiyên Rojhilata Navîn û Asya bi Afrîqayê re ye. Herwiha li niqteya stratejîk ya di navbera Behra Sor, Behra Ereb û Xelîca Eden'ê de cih girtiye. Girîngtir ji vê jî, hevsînorê Erebistana Seûdî ye.

* Ya din ji ber vê ye ku Yemen hevalbendê Amerîka û Erebistana Seûdî ye û hevkariyek nêzîk ya ewlehî, perwerdehî û leşkerî bihev re hene.

* Sedemek din ev e ku nêzîk bi ji sedî 30 ya nifûsa Yemenê ji Şîe mesebên Zêdî pêk tê û Komara Îslamî jî bi alîkariyên madî û menewî yên xwe, hest û seha ayînî ya wan bihêz dike û ji rêya girûpek bi navê "Hosî" bi serokatiya Ebdulmutelib Tebatebayî Hosî ve armancên xwe pêşve dibe. Di rastî de Hosî peyrew û stûxwarê Îranê ne û rola Hizbulaha Lubnanê ji bo Îranê di Yemenê de dilîzin.

**Armanc:**

Komara Îslamî bi teyîsandina vî şerî ku pitir ji mehekê ye berdewam e û bi sedan kuştî û birîndar dane û herwiha bi sedan hezar kes jî koçber û derbider bûne, eva ye ku:

* Bîr û raya giştî ya cîhanê û bi taybetî Amerîkayê bo aliyê Yemenê tevlihev bike û di bin givaş û sîbera van şer û aloziyan de, bikare bo midehek din bîr û raya giştî bixapîne û li ser mehandina uraniyûmê berdewam be û qonaxek din ji demê bi qazanca xwe heder bide.

* Ji aliyekî din jî dixwaze cî û pêgeha xwe di cîhana Erebî de bihêztir bike û ji Behra Sor û sînorên Erebistana Seûdî nêzîktir bibe û desthilat û hêjmoniya xwe bi ser "Şibê Girava" Erebistanê bihêztir bike.

* Herweha dixwaze ji rêya vî şerî û vê rewşa nearam ya siyasî ve derbekê ji Yekîtiya Ereban bide û zirarê bigehîne berjewendiyên Amerîkayê di deverê de.




* Armancek din jî ev e ku bikare dûr ji çavên raya giştî û di bêdengiyê de bûyerên piştî binav hilbijartinê û rewşa nearam ya siyasî di hundirê Îranê de bi çavsorî, tepeserî, girtin û kuştinên zêdetir kontrol û çareser bike.

* Armanca dawîn jî ev e ku dixwaze Komara Yekgirtî a Yemenê ku bi kudetayekê di sala 1992'an de desthilat ji destê kêmaniya şîî mesebên Zêdî di wî welatî de stand, lawaz û bihiloşîne û carek din desthilata wan ku di rastî de deshilata xwe ye, ji wan re vegerîne.

Niha em dibînin ku piştî vê bûyerê hawara Yemen, Erebistana Seûdî û heya qasekê jî Amerîkayê bilind bûye û rasterast Komara Îslamî bi çavkaniya vî şerî tawanbar kirin û ragihandin ku xêncî hevkariyên madî û menewî yên rejîmê, hevkariyên lojîstîkî û ragihandinî yên Komara Îslamî jî berdewam in. Herwiha Amerîkayê jî nigeraniya xwe derheq rewşa aloz ya Yemenê û bihêzbûna El-Qaîdê di wî welatî de anî ziman. Lewre daxwaza hevkariyên ewlehî yên zêdetir bi Yemenê re kir û ragihand ku nabe em bihêlin girûpên terorîstî vê derfetê bi giring bizanibin û ji rewşa nearam ji bo kar û çalakiyên terorîstî mifahê bistînin.

Lewre, ger civaka cîhanî û bi taybet Amerîka naxwazin ku Efxanistanek nû bi navê Yemenê derkeve holê, ku bibe cihê veheviyan, perwerdehî û pîlanên terorîstan û "teswiye hisab"ên herêmî yên Îranê û lêdana qazanc û berjewendiyên rojava û bi taybet Amerîkayê di deverê de, divêt demildest pêşiya desttêwerdan û siyasetên şerxwazane û têkderane yên Îranê bigrin. Nexa berevajî wê yekê, Komara Îslamî him dê bigihîje bi merem û armanca xwe ya sereke ku çeka etomê ye, him jî dê germahî û lezgîniyek zêdetir bi şemendefira terorîzm û alozîafirîn a xwe bide.

RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

Ebdullah Hicab



# Gurên Dev Bi Xwîn

Piştî gefên wan rojên dawî ji aliyê Xameneyî û rêber û karbidestên din ên rêjîma Komara Îslamî ku ji hemû quncik û goşeyên welat re şûrê şer li hember rexnegirên xwe hil didin, tê payîn ku pêlek nû ji girtin û kuştinan li Îranê bi rê ve be. Gotinên Xameneyî li ser "pêwîstiya sîstemê ji bo parastina xwe" heman senaryoyan zindî dikin ku gelên Îranê bi kêmî li 2 qonaxên pêşîn di dîroka pir ji kuştin û xwînrêjî ya Komara Îslamî de ceribandine. Niha dubare nîşaneyên wisa hene ku gurên dev bi xwîn berê xwe dane nav civakê û pêlek nû ji xwînrêjiyê bi rê ve ye.

Digel ku hemû sal û rojên temenê Komara Îslamî, hertim pir ji kuştin û zordarî bûye, lê heya niha, bi kêmî 3 qonax ji demên din cuda bûne. Du qonaxên pêşîn û amadekariya qonaxa sêyem di dema pêş me de, demên kuştinên bikom e. Qonaxa yekê her ji rojên destpêka jiyana Komara Îslamî, li Kurdistanê re dest pê kir. Sala 1980 (1358) hemû gund û bajarên Kurdistanê ji her alî ve ketin ber êrîşên Komara Îslamî. Hecet ji aliyê Xumeynî ve bi wî awayî ji xelkê re hate gotin:

***"Sîstemê pêwîstî bi parastina xwe heye!".***

Di dema navbera salên 1980 heya 88an de ku şerê Îran- Îraqê bi germî dimeşiya, tu gav kuştin û serkutkirin li hundirê Îranê bi dawî nebû, lê di bin siya şerê bi Îraqê re, rêje û çawaniya kuştinên navxwe xuya nedikir. Di wan salan de çi hate serê gelên Îranê, çi qasî mirov hatin kuştin, çi qas welat kavil bû, mijarek dûr û dirêj e ku pir caran bas li ser hatiye kirin.

Qonaxa duyemîn ya kuştinên bikom li sala 1988 (1367), piştî operasiyona Rêxistina Mucahidîn ê Xelq li hemer rêjîmê dest pêkir. Hêcet dubare her heman gotina Xumeynî ya sala 1980 bû: *"Sîstem di tehlîkê de ye û pêwîst e bi tundî xwe biparêze".*

û niha, dubare heman diholê lê dixin. Êdî di qonaxa nû ya kuştin û tesfiyekirina rexnegiran de dê kî li ber bikeve, çi qas mirov bêne kuştin û ev kuştar dê heya ku bimeşe, tenê rojên li pêşiya me dê eşkere bike.

Ji hêceta rêjîmê ji bo serkut û tevkujiyan, ku herdemê mîna hev hatiye ragehandin bi der, pir xalên din yên hevbeş ên du qonaxên pêşîn û pilana qonaxa nû ya mirovkujiya bikom ya Komara Îslamî hene:

**- Di her 3 qonaxan de rêjîmê bûyerên hundir bi rewşa navneteweyî re girê dane**

Sala 1980 Xumeynî bi hêceta ku tevgera Kurdistanê pereyek zêde ji NATO standiye û dixwaze komara nû avabûyî hilweşîne, fermana cîhadê li hember gelê Kurd ragehand. Di heman demê de hêzên pêşverû bi hêceta hevkariya bi Amerîka û Rojava re ketin bin zextên rêjîmê û di dawiyê de hemû ev rêxistin weke saziyên neyasayî hatin ragehandin. Pêla kuştin û girtina sînor nas nekirin. Paşan şerê Îraqê bi ser de hat û êdî hemû pêngavên serkutkirina dijber û cudabîran bi hêceta şerê bi dijminê dereke re hatin veşartin.

Sala 1988 (1367) pêla duyemîn ya kuştin û girtinan destpê kir. Wê carê şerê Îraqê bi dawî hatibû, lê rêxistina Mucahidîn ê Xelq operasiyonek xurt ya serbazî li dijî rêjîmê rêve bir û tê de şikest xwar. Komara mirovkujan bi hêceta ku hin komel û kesên navxwe û heta yên di girtîgehan de, pilan dikirin ku bi Mucahidînan re pêngavên xwe bikin yek û rêjîmê biherifînin, dubare pêlek nû ya kuştinê bi rê xist.

Îsal, rêjîm nakokiya xwe bi Rojava li ser mijara pirojeyên çekên navokî re dike hêcet û dixwaze wisa nîşan bide ku tevgera nû, bi hevkariya Rojava hatiye birêxistin. Lewma dema gefên nû li hember tevgera nû ya sivîl li welat, di demekê de dest pê kiriye ku mijara projeya atomî ji her demê germtir di rojeva hêzên xurt ên cîhanî de ye.

**- Di her yek ji wan sê qonaxan de, kes an aliyek weke sebebkar hatiye nîşandan û bi wê hêcetê bi dehan hezar kes, ku hin ji wan çi têkilî bi bûyeran re nebûn, hatine kuştin**

Di destpêka salên jiyana xwe de, Komara Îslamî serhildana gelê Kurd kire hêcet û pêla yekemîn a kuştina dijberan dest pêkir. Sala 1988an, Mucahidîn û helwêsta wan bû hecet, û niha jî tevgera nû ye ku piştî şanosaziya hilbijartina Serokkomar bi rê ket, bûye hêcet.

Dema Ehmedînijad û Xameneyî bi awayekî eşkere encamên hilbijartina Serokkomariya îsal li gor dilê xwe guherîn, vê carê kesayetiyên ku berê ev diparastin, êdî ev binpêkirina eşkere ya mafan nepejirandin. Her du kandîdayên ku ji aliyê Xameneyî ve, ji meydana siyasetê hatin dûrxistin, vê carê li ber xwe dan û siyaseta fermî ya desthilatdaran qebûl nekirin. Bi rabûna dubare ya perdeya reş a mekr û hîle û xapan ji rûyê rêjîmê, vê carê bi milyonan xelk ketin kolanan û dirûşma guherîna rewşê anîn ziman. Ji bo ku tenê ev hêcet bes bû ku dîsan şûrê xezebê nîşanî xelkê welat bide.

Di hemû bûyeran de rêberê olî, bi hêceta ku wan kom û kesan riya xwe ji ya rêjîmê cuda kirine û pêwîst e werin tesfiyekirin, riya kuştinan vekiriye. Niha jî Xameneyî ev kes bi navên *"evên heya niha di nava sîstemê de bûn, vê şaş diçin û pêwîst e pêşiya wan were girtin"* dane nasandin û çarçoveya dan û sitandina bi wan re danî.

**- Amadekirina zemîneya kuştinan bi tevgerek siyasî ve hatiye girêdan ku eger rêjîmê destûra kar jê re bida, dê bi awayekî nerm bimeşiya**

Di her sê pêlên kuştaran de, tevgerên siyasî yên li meydanê, tenê hin daxwaziyên siyasî anîbûn rojevê ku eger bersivek erênî bigirta, dikarî riya siyasî ya welat ber bi aliyê nermbûn û aramiyê ve bibe. Lê Komara Îslamî bi çeng û didanên tûj, hemû derfetên axaftin û anîne rojeva daxwaziyên siyasî xetimandin.

**- Pêlên mirovkujiyan bi lez û bêy pêvajoya yasayî, ku di eslê xwe de dijî hemû nirxên mirovatiyê ne, hatine rêveçûn. Guman heye ku wê carê jî heman senariyo dubare nebe**

Di qonaxên pêşîn de, pêlên kuştinan bi lez û bez û dûr ji pêvajoya mehkemeyan hatine meşandin. Destên bi xwîn ên Xelxalî, Lacewerdî û mirovkujin din niha jî ji bîra kesî neçûne. Vê carê îmam cume û serok û serleşkerên Sipaha Pasdaran, dubare rê ji bo kuştinên bê mehkeme xweş dikin. Her çend ku encama dadgehên Komara Îslamî jî tiştek ji kuştinê baştir nîne.

Niha ji her demê pitir pêwîstiya tevgera azadîxwaz bi hevgirtin û amadekirina xwe heye.

Komara Îslamî ya Îranê li ser bingeha bê edaletî, zordarî, duçavkî, kuştin û bêrêzî ji buhayên mirovayetiyê re hatiye avakirin. Kêmasî ne tenê li hin piratîk an şêweya birêveberî û kesên ser kar de ye, kêmasî di cewherê sîstemê bi xwe de ye û tenê bi guherîna rêjîmê ew kêmasî dikare were serrastkirin.

Amadekariya zemîneya guherînê bi avakirina pilatformek siyasî ya alternatîv mumkin e. Ji bo wê yekê hêzên siyasî yên Kurdistanê pêwîst e weke mîmar û muhendizê têkoşînê zendê vemalin. Bi belavî û zimanê dûrxistinê ku îro jî tê bikaranîn, ne rêjîm ber bi guhertinê ve diçe û ne jî canê kesên ku weke pêşengê guherînê têne meydanan tê parastin. Lewma erka sereke ya opozîsiyona Kurdistanî ev e ku deriyê diyaloga navxwe veke, zimanê lihevhatina navxweyî bikar bîne, ji cudabûnên pitir dûr bikeve û hemû komel û grûpên ku di meydana têkoşînê de ne, tevlî pêvajoya lihevhatin û avakirina pilatforek nû ya siyasî bike.

Weke çawan di salên pêşîn de tu alî û hêzên navneteweyî nehatin hawara kesên li ber kêra serbirînê, nabe bê hêvîkirin ku pêla nû ya kuştinan ku li Îranê birêve ye, ji aliyê hêzên dereke ve bê rawestandin. Destê ku pêşiya wan cinayetan bigre, bi tenê destên hevgirtî yên gelên Îranê ye. Rola tevgera Kurd di wê navê de sereke ye.

# Daxuyaniya Deftera Siyasî A PDKÎ Derheq Sala Nû A Xwendinê

**Şagird û xwendekarên hêja!**

Tevî dawîhatina werza bêhnvedanê, roja çarşem 23'ê Îlona 2009'an, deriyê dibistan, xwendingeh û zanîngehan bi awayekî fermî ve dibin û sala xwendina 2009-2010'an dest pê dike. Bi vê hincetê PDKÎ pîrozbahiyê ji we dike û hêviyê dixwaze dike ku sala nû a xwendinê bibe salek tejî destkevt di pêvajoya perwerdebûn û xwepêgihandina we de be.

**Şagird û xwendekarên qedirgiran!**

Îsal jî sala nû a xwendinê di bin desthilata rejîma dîktator a Komara Îslamî ya Îranê de destpê dike. Rejîmek ku kêmtirîn bihayê dide karê xwendin û perwerdehiya we û jêre qet ne girîng e ku şêweya perwerdebûna we ber bi çi aliyekê ve dimeşe û çarenivîs û pêşeroja we weke hêviya pêşeroja welatê me, tevî çi asteng û pirsan berbirû dibe.

Ne tenê eva, belku bi awayekî sîstematîk hewle dide ku rewşekê biafirîne ku astengan bixe ser rêya xwendin û hînbûna we. Ji ber ku pêşeroja we wisan diyarî bike ku bixwe dixwaze û xizmetê bi armancên xwe bike. Mixabin eva jî tevî pêvajoya xwendin, hînbûn û pêgihandina cîhana îro dijberî heye û çarenivîsa şagird û xwendekarên welat ji rê derdixe û ji armancên fermî û mirovî dûr dixe.

Sala derbazbûyî a xwendinê wek hemû salên çûyî bo pirraniya we şagird û xwendekaran salek tejî zehmet û dijawar bû. Salek bû ku hejmarek zêde ji we bi tawana rewşenbîrbûn û seh bi berpirsiyarîkirin li hember welat û xelkê me, hatine girtin û ji xwendinê bêpar man. Beşek ji şagird û xwendekar ligel ku evîndarê xwedinê bûn, lê seba hejarî û destkurtiyê ji xwendinê veqetiyan. Ji hemûyan dilêştir eva ye ku di sala nû a xwendinê de cihê wan şagird û xwedekaran ku bi hêcetên cur bi cur ji aliyê hêzên rejîmê ve hatine kuştin, di nava heval û hevkilasiyên xwe de vala ye û malbatên wan reşpoş û tazîdar bûne.

Bêşik rejîma Îranê îsal jî hewlê dide ku rewşeke polîsî li ser xwendingehan bisepîne, zext û givaşên zêdetir bixe ser şagird û xwendekaran û naveroka waneyên xwendinê zêdetir tevî îdeolojya xwe ya paremayî rêk bixe, bê vê yekê ku seh bi hewcehiyên serdema nû û zanista pêşkevtî a îroyîn bike. Bo gihîştin bi vê armancê jî, rêya nedurust dixe pêşiya şagird û xwendekaran û diyardeyên malwêranker wek bengdarbûn û ji xwe bîhanîderketin di nava wan de xurt dike. Heta renge rejîm bi hêceta guhertina naveroka beşek ji waneyên xwendinê, nemaze di beşa zanistên mirovî de ku goya mijarên wan bûne sebebê dûrketina şagird û xwendekaran ji ramanên rejîmê, xwendin di vê beşa zanîngehê de bo heyamek kurt yan dirêj bide sekinandin û hewlê bide beşek ji mamostayên vê beşê ji karê wan bavêje. Di halekê de sedema sereke a vekişana xelkê ji rejîma Îranê, ne naveroka waneyên xwendinê ye, belku riftar û siyaset û helwesta dijî gelî a vê rejîmê ye ku ev yek îsal bi awayekî zêdetir û eşkeretir heta ji bo desthilatdarên rejîmê jî derket holê. Lê desthilatdarên rejîmê li dêlva ku li pey sedema sereke û bingehîn biçin û xwe biguherînin, berçêla şagird, xwendekar û naveroka waneyên dersî digirin.

Bi giştî piştî meşa nerazîbûna xelkê derheq binav hilbijartina dehemîn dewra Serokkomariyê li Îranê û ew riftarên dijî mirovî ku hêzên rejîmê li dor xelkê nerazîbûyî ji xwe nîşan dan, divêt pêşdîtina vê yekê bê kirin ku rejîma Komara Îslamî bo man û domandina desthilata xwe, ji berê zêdetir xwendekaran tepeser bike û zanîngehan bixe jêr çavdêriya xwe û ji tu bêhurmetîkirinek bi şagird û xwendekaran xwe neparêze. Lewra di rewş û atmosfereke wilo de û di sala nû a xwendina de, erkê şagird û xwendekaran gellek ji berê girantir û di hemen demê de pîroztir e. Çimku serbarê hestkirin bi hewcehiya xwendin û hînbûn û xwepêgihandinê, erkê

**Dom di rûpela 8'an de...**



## Mafê Mirovan



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

# Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Derve De

***Pirsgirêk***

Biryardanên zehmet û hilbijartin û girîngîdan bi pirsgrêkan, pirsek girîng e di darêştina siyasetê de, lê dema pirsa mafê mirovan derdikeve holê, ev pirs hin girantir dibe. Berî her tiştekî pirsa mafê mirovan dikaribe kar bike ser pêwendiyên dostane yên dewletên biyanî. Ew pirs nemaze demekê tê ku dewleta berbas di binpêkirina mafê mirovan de xwediyê derbazbûyek dirêj be. Eva jî daxwaza bersivdanê ji wan welatan dike ên ku mafên mirovan wek beşek ji siyaseta dereve ya xwe dizanin.

Balyozên wan welatan ji bo amadekirina rapora ser rewşa mafê mirovan dê bên memûrkirin, ger pêwîst be diviya hin fakt bên nîşandan û wê jî pêwîstî bi hin pirsan heye ku renge bibe hegera wê yekê ku dewleta din wî karî wek nedostane û destwerdan di karûbarê navxweyî yê welatê xwe de bibîne. Ew yek dibe hegerê wê jî ku dewletek wî karî wek li metirsîxistina pêwendiyên du welatan binav bike. Weke xuya ye ew pêwendiyane dikaribin bikevin metirsiyê dema ku pirsên mafê mirov bi awayeki wekirî û eşkere bikeve ber rojevê. Faktorek din derbarê siyaseta têkildar bi mafên mirovan ew e ku ger dewletek bixwaze di wê pêwendiyê de li ser rewşa mafê mirovan li dewletek din biaxive, ew dewleta jî wê pirsê bi pirsek navxweyî dizane. Ew jî bi wateya hilbijartina di navbera rêzgirtin ji serweriya siyasî ya kevneşop a dewletek din de tê an jî desttêwerdan li karûbarên hundirîn yê welatek din.

Bo midehê çendîn salan Komara Afrîqaya Başûr apartayd bi pirsek navxweyî dihesiband û digot li gor benda 7 a paragrafa 2 ya Destûra Neteweyên Yekgirtî, cîhana dereve û Neteweyên Yekgirtî mafê wê yekê tune têkelî karê me bibe. Serencam Konseya Ewlekarî ya Neteweyên Yekgirtî ser wê bingehê helwêst girt û ragihand rewşa Afrîqaya Başûr metirsiyek e ser aştî û tenahiya navneteweyî. Dewleta Afrîqaya Başûr tenê dewletek nine ku dixebite û dixwaze pêpeskirina mafên mirovan di bin sîbera wê benda destûra Neteweyên Yekgirtî de veşêre. Dewlet dixwazin binpêkirina mafê mirovan veşêrin û ger ewa jî bi wan neyê kirin, deî dikin ku ewa ne pirsa civaka navnetewî ye. Civaka navnetewî wek erkek xwe cidîbûna mafên mirovan bêy berçavgirtina sîstema hiqûqî ya navxweyî ya welatan tîne ser ziman. Peymanên Neteweyên Yekgirtî û rêxistinên din ên navnetewî bi giştî tên piştgirîkirin. Lewma mafê jiyanê ku mafek bingehîn ên mirov e ji mafê serweriya siyasî û şiroveyên wilo girîngtir e. Eva faktorek gelek giring bo pişteîvanî ji desttêwerdana rêxistinên navnetewî nemaze Neteweyên Yekgirtî – li karûbarên navxwe ên welatan tê dîtin. Di dawî da di wê nivîsarê de em wê pirsê bînin ser ziman, gelo Neteweyên Yekbûyî diviya destwerdanê li êrîşa leşkerî an neleşkerî yên welatekê li ser welatek din bike?

## Şehîdên Berlînê Di Nav Dilê Gel De Zindî Ne

17ê Îlona 2009an, 17 sal bi ser teror û şehîdkirian hovane a rêberê navdar yê Kurd û Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî li xwaringeha Mîkonos li Berlînê di sala 1992an de derbaz dibe. Di sala 1997'an de, Dezgeha Dawerî a Almanya piştî lêkolînek çend salî bi sedan kesan re, biryara dawî da û Komara Îslamî û rêberên wê yên payebilind wek encamderê wê kiryara terorsîtî nasand û nehêla xwîna şehîdên Kurd ên Mîkonêsê wek Viyenê bibe goriyê dan û standinên aborî.

Şehîdên Berlînê herdem di nav dilê gel de zindî ne. Em wan bi rêz û hruemt bibîr tînin.

**Desteya Weşanan Agirî**




Paşkoya Taybet Bi Hinceta 17'hemîn Salvegera Terorkirina Dr. Şerefkendî û Hevalên Wî Hejmar: 119


# Rê û Resma 17hemîn Salvegera Şehîdên Berlînê Di Binkeya Deftera Siyasî Ya PDKÎ De Hat Lidarxistin

Êverîya roja pêncşem, 17ê Îlona 2009'an, bi hiceta 17hemîn salvegera şehîdkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî di sala 1992an de, li bajarê Berlînê, rêûresmeke berfireh a rêzgirtin û bibîranîna wan şehîdên rêya azadiya Kurdistanê, di binkeya PDKÎ de rêve çû.

Di wê rêûresmê de endamên rêberiya partiyê, kadro û pêşmerge û malbatên wan û herwiha hejmarek mêvan û şandên partiyên siyasî yên Kurdistanê beşdar bûn.

Piştî pêşkêşkirina sirûda netewî û ragirtina deqîqeyek bêdengî bo rêzgirin ji şehîdên rêya rizgariya Kurdistanê, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ, Rostem Cehangîrî, peyama Polîtburoya partiyê bi vê hikevtê pêşkêş kir. Rostem Cehangîrî di vê peyamê de bal kişande ser çawaniya terorkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî ji aliyê terorîstên Komara Îslamî a Îranê. Cehangîrî piştre li ser jiyan û xebata şehîdê rêber Dr. Sadiq Şerefkendî axivî û behsa rol û têkoşîna wî rêberê navdar di PDKÎ de kir.

Rostem Cehangîrî di dawiya peyamê de bal kişande ser bandora biwêrane a Dezgeha Dadwerî ya Almanya li hember terora Mîkonosê û sipas û pêzanîna PDKÎ ji wê helwêsta netirsane ya Dezgeha Dadwerî ya wî welatê kir.

Di beşekî din ya rêûresma bibîranîna 17hemîn salvegera şehîdên Mîkonosê de, peyamên Yekîtiyên Jinan, Ciwanan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê hatin pêşkêşkirin.

Rêûresma 17hemîn salvegera şehîdên Mîkonosê bi xwendin û pêşkêşkirina çend sirûdan û pexşanekê bidawî hat.



Rê û Resma 17hemîn Salvegera Şehîdên Berlînê Binkeya Deftera Siyasî Ya PDKÎ, 17.09.2009



# Li Rojhilatê Kurdistanê Dr. Şerefkendî û Hevalên Wî Hatin Bibîranîn

**Agirî – taybet: Di 17hemîn salvegera terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî de, xelkê Kurd li gund û bajarên Rojhilatê Kurdistanê bi çalakiyan bibîr anîn.**

17ê Îlona 2009an, hevde sal bi ser terora hovane a rêberê navdar yê Kurd û Serkreterê Giştî yê PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî (Fetah Ebdulî, endamê Komîteya Navendî ya PDKÎ û nûnerê partiyê li derveyî welat, Humayon Erdelan, berpirsê Komîteya PDKÎ li Almanya û dostê PDKÎ û xebatkarê rêya azadiya Îranê Nûrî Dêhkurdî) bi destê terorîstên şandî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê li bajarê Berlînê derbaz bû.

Wek hemû salên berê, îsal jî xelkê azadîxwaz û welatparêz yê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê, bi armanca rêzgirtin ji şehîdên Berlînê ên sala 1992an û herwiha şermezarkirina rejîma terorîstperwer a Komara Îslamî, çalakiyên cur bi cur lidar xistin. Ligel wê çendê ku hêzên ewlekarî û çekdar û kirêgirtiyên Komara Îslamî gellek hewl dabûn ku pêşiya wan çalakiyan bigrin. Lê her wek pirr bone û hincetên din ên hizbî û netewî, nekarîn pêşiya tevgera û çalakiyên ciwanên Kurd li Kurdistana Îranê bigrin.

Îsal jî ji Makû heta Îlamê, li gund û bajarên Kurdistanê, endam û alîgirên nehênî ên PDKÎ û evîndar û xebatkarên rêbaza rêberên şehîd, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî, bi çalakiyan, rêz û emegdariya xwe ji bo wan şehîdan nîşan dan ku jiyana xwe kirine goriyê xwestek û daxwaziyên gel, ango azadî, demokrasî û mafê neteweyî.

Wêne û gotinên şehîdên rêber û bi taybet Dr. Sadiq Şerefkendî li kûçe û şeqaman gellek bi berfirehî hatin nivîsîn û belavkirin.





Herwiha dirûşmên piştgirî ji xebata PDKÎ û rêbaza Qazî, Qasimlo û Şerefkendî hatin nivîsîn. Bi nivîsîna dirûşmên cur bi cur terorîstperwerbûna Komara Îslamî hate şermezarkirin. CDyên deng û gotinên Dr. Şerefkendî hatin belavkirin.

## Peyama Deftera Siyasî Ya PDKÎ

# Bi Hilkevta 17hemîn Salvegera Şehîdbûna Dr. Şerefkendî û Hevalên Wî



*Rostem Cehangîrî, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ*

**Xuşk û birayên rêzdar!
Hevalên hêja!
Civatên xelkê Kurdistanê,
rêvîngên rêberên şehîd, Qazî, Qasimlo û Şerefkendî!**

Îro 26ê Xermanana 1388 (17ê Îlona 2009), 17hemîn salvegera terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ û hevalên wî Fetah Ebdulî, endamê Komîteya Navendî û nûnerê Partiya Demokrat li Ewrûpayê, Humayûn Erdelan, berpirsê komîteya PDKÎ li Almanya û yarê rêberên partiyê Nûrî Dêhkurdî ye. Em li hev civiyane ku bi wê hincetê Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî ên wefadar bibîr bînin û soz û peymanê bi wan re nû bikin ku rêya wan bidomînin û rêz û hurmetê ji xebata tejî fidakarî û bandora wan bigrin.

**Heval û şagirdên Dr. Seîd!**

17 sal berî niha di rojekî wek îro de û di jiyana bindestî a netewea Kurd de, Dr. Sadiq Şerefkendî, naskirî bi Dr. Seîdê xoştivî, Sekreterê Giştî yê wê demê yê partiyê, yar û yawerê wefadar yê Dr. Qasimloyê me yê rêber ku bo beşdarîkirin di civîna Enternasyonala Sosyalîst çûbû Almanya, bi destê terorîstên Komara Îslamî hate şehîdkirin. Dr. Şerefkendî di wê seferê de, berî şehîdbûnê bi kar û çalakî û hevdîtinên xwe digel şandên beşdar li wê kongreyê û herwiha di pêvajoya karê kongreya ESê de pirr baş beşdarî kir û karî cih û pêgeha PDKÎ nek her biparêze, belku pêgeha partiya xwe zêde û xurttir bike. Bi taybet ku PDKÎ taze ji derba jidestdana rêberê xwe yê bêhempa pişta xwe rast dikir. Dost û dujminan PDKÎ xistibû bin çavdêriyê ku çawa şagirdên Dr. Qasimlo piştî şehîdbûna wî, dê partiyê rêve û pêşde bibin. Lê bi rastî piştî şehdîbûna Dr. Qasimlo ligel ku jidestdana wî kul û êşek gellek mezin bû, lê rêvîngên wî şehîdê rêber ruhya xwe ji dest nedan û nehêlan bo demekê jî bêhêvîtî wê partiyê dabigre û dilê dujminan pê şad bike.

**Xuşk û birayên rêzdar!**

Bername û nêrîna rejîma Îranê bo jinavbirina rêberên PDKÎ ew bû ku tenê PDKÎ bi awayekî çalak çi di meydana şerê leşkerî de û çi di qada siyasî û dîplomasî ya navneteweyî de li hemberî rejîma dijgelî a Komara Îslamî sekiniye û naweste, lewra hat ser wê bawerê, divê li serê tevgerê bibe heta laşê wê ji liv û bizivînê bikeve.

Lewra dest da terorkirina Dr. Qasimlo, lê dem ku dîtin Dr. Şerefkendî cihê wî rêberê navdar tejî kiriye û partî her di cih û pêgeha xwe de ye û pêşmerge her di çepera berxwedanê de ne û Kurdistan her goristana dijîgeliyan e, biryar dan ku divê bi her ntirxekê be, ew rêberê mezin jî ji holê rakin heta ku PDKÎ ji kar bikeve û gelê wê bêhêvî be û dest ji maf û azadiyên xwe berde û bi tevahî teslîmê dujmin be. Loma em dibînin wisa bêperde û bi awayekî hovane êrîşê dikin ser cihê mana Dr. Seîd û hevalên wî ku mijûlî gotûbêjkirin û guhertina hizr û nerînan derbarê hinek pirsên opozîsyona Îranê bûn, ketin ber êrîşê û şanda PDKÎ bi tevahî di wê cinayetê de şehîd bûn ku pêkhatîbûn ji: Dr. Sadiq Şerefkendî, Fetah Ebdulî, Humayûn Erdelan û dostê Kurdan û PDKÎ Nûrî Dêhkurdî, xebatkarê Îranî. Lê dîsa Komara Îslamî negiha wê armanca xwe ku bêdengkirin û jinavbirina xebata gelê Kurd û PDKÎ bû.

Dr. Mihemedsadiq Şerefkendî di 11ê Çileya Pêşîn a sala 1938'an de ji malbatek welatparêz li gundê Terexe ser bi bajarê Bokanê hate dinê. Di temenê zarokiyê de bavê xwe ji dest da û serperestîkirin û xwedîkirina Dr. Seîd kete ser milê birayê wî, helbestvanê navdar ên Kurdistanê, Mamsota Hejarê nemir. Xwendina xwe ya destpêkî li Bokanê û piştre li Mehabadê domand, piştre jî salên dawî ên xwendina qonaxa paşnavendî li Tewrêzê kuta kir. Di sala 1959'an de li Kolêja Bilind a Tehranê Lîseya Kîmyayê wergirt. Dr. Seîdê nemir di dewrana xwendinê de li hemû qonaxên xwendinê şagirdekî nimûne û jîr bû. Piştre bû mamostayê dersa kîmyayê û heta sala 1965an li Urmiye û Mehabadê erkê pîroz yê mamostatiyê rêve dibir. Ji ber jêhatîbûna Dr. Şerefkendî di wê heyamê de, di karê mamostatî û dersbêjiyê de, wek mamosteyekî şareza navûdengek mezin derkir. Diyar e dezgehên ewlekarî ên rejîma Mihemedriza Şah çavê dîtina xizmetên bihagiran ên Dr. Seîd bi gelê xwe û nifûz û hitbara roj bo rojê zêdetir a wî di nav xelkê de nebû. Lewre biryar standin digel hejmarek ji hevalên wî bo bajarên Kerec û Erakê bên dûrxistin.

Şehîdê nemir, Dr. Şerefkendî, di sala 1972'an de bi mifahwergirtin ji burseya Wezareta Zanistan, çû bo Fransa û piştî çar salan man di wî welatî de, karî duktoraya kîmyaya analîk werbigre û sala 1976'an vegeriya Tehranê û wek alîkarê mamsotayê kîmyayê di zanîngeha "Terbiyet Moelim"ê de karê xwe domand.

Di dema xwendina xwe de li Fransa, Dr. Şerefkendî ji rêya şehîdê rêber Dr. Qasimlo, digel PDKÎ nasyar bû û bûye endamê partiyê, dema vegeriya Îranê, bû rabitê rêxistinê di navbera endamên partiyê li Tehranê digel şehîd Dr.

Qasimlo. Dr. Şerefkendî heta dema hiloşîna rejîma Şah erkê xwe bi başî rêve dibir û gelek ked da û zehmet kişand. Her ji ber wê jêhatîbûna wî bû ku piştî hiloşîna rejîma Paşatî, di civîna Komîteya Navendî di sala 1980an de wek endamê Ravêjkarê Komîteya Navendî ya PDKÎ hat hilbijartin û piştre bo karê temam dem bo Kurdistanê hate bangkirin. Dr. Şerefkendî destbicî ew biryara partiyê bicih gihand û vegeriya Kurdistanê û hemû dem û şiyan û karîna xwe danî xizmeta PDKÎ.

Di Kongreya çarem ya PDKÎ de di zivistana sala 1980'an de, wek endamê Komîteya Navendî ya PDKÎ û di civîna Komîteya Navendî de jî wek endamê Polîtburoyê hat hilbijartin. Dr. Seîd ji kongreya çarem ve heta kongreya nehem a PDKÎ hemû carê wek endamê Komîteya Navendî yê PDKÎ û piştre wek endamê Polîtburoyê hat hilbijartin. Ji sala 1986'an pêre wek Cihgirê Sekreterê Giştî ya PDKÎ hatiye diyarîkirin. Piştî şehîdbûna rêberê mezin Dr. Qasimlo, Dr. Seîd di heyamê têkoşîna xwe ya hizbî de gellek berpirsiyarî rêve biriye, erkê wek beşa 'teblîxat' (Radyo û Çapemenî) û Rêxistin ku di hemû wan postan de ku pê hat sipartin, bi awayekî gellek baş erkên xwe rêve bir û herdem serkevtî bû.

Dr. Sadiq Şerefkendî her ji wê dema ku hat nav rêberiya partiyê, wek yek ji rêberên giring û bi bandor hat naskirin û di siyasetdarêtin û helwêstên PDKÎ û danîna usûl û prensîpên partiyê de rolekî herî barçav hebûye. Dr. Şerefkendî li ser rêvebirina usûlan bi awayekî serûber pirr bi xurtî û micidî pêdagir bû, bêpirensîpî û bêusûlî ji tu kesî qebûl nedikir û li ser biryarên partiyê biîsrar bû.

Dr. Sadiq mirovekî netirs, xwedî moral, biexlaq, rastbêj û duristkar bû, mirovekî wefadar û yar û yawerekî heta dawî yê rêberê me yê şehîd Dr. Qasimlo bû, mandîbûn nas nedikir û herdem pirrkar bû, cidîbûna Dr. Sadiqê şehîd ji bo hemû aliyekî ron û eşkere bû. Hemû ew xislet û edetên ku di Dr. Sadiq Şerefkendî de kom bûbûn, bibûn sermayekî mezin bo partiyê û gelê xwe, Kadro û Pêşmergan gellek ji Dr. Seîd hez dikirin, wî jî bi dil û can ji Kadro û Pêşmergan re hez dikir.

Kesayetiya Dr. Seîd ew qas bilind û berçav bû ku piştî şehîdbûna Dr. Qasimlo, bê Qasimloyî bi partiyê re xuya nedikir û bûbû sedema aramî û asûdebûan dilê xebatkarên gel û partiyê.

Dr. Seîd li ser gora gellek şehîdan axivî, hem aramî da Kadro û Pêşmergan û bi taybet xelkê Kurdistanê, hem jî ew han didan ku ruhye û morala xwe bilind bikin û digel xem û kovana berengariyê bikin û rêbaza şehîdan bidomînin, dersên wî rêberî bikin çirayê rêbaza xebatê. Wî digot: ***"Bila dayikên Kurdistanê, keç û xortên xwe di hembêza germ û tejî evîn û hezkirina xwe de bi hesta welatparêzî û azadîxwaziyê perwerde bikin û çîroka jiyana Dr. Qasimlo û şehîdên din ên rêya rizgariyê di guhê wan de bixwînin, bila babên Kurdistanê dersa netirsî û xebatkariyê fêrî zarokên xwe bikin û wan têbigihînin ku jiyan bi azadî çiqas xweş e û çiqas cihê hêvî û civaka xwe ne. Bila ciwanên Kurd, kur û keç baş bizanin ku jiyan di bindestî û êxsîrî û serşorî û şermezariyê de bê qedr û qîmet e. Di hember de hilmijîna hewayê paqij û serbilindî û azadiyê çiqas xweş û dilber e."***

Emê li vir gotinek din ya Dr. Seîd bikin çirayê rêbaza xwe ku dibêje: ***"Gellek ron û eşkere ye ku Kurd ocaxkor nebûye."*** Ew gotin bi tevahî rast e, Kurd xwediyê dehan û sedan Dr. Qasimlo û Dr. Seîdan e, emê waneyên wan bikin sembol û sermeşqê xebata rizgariya xwe.

Di vê hilkvetê de pêwîst e em qala wê rastiyê bikin ku Komara Îslamî di cinayeta terorkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî de bi hêsanî derneçû. Li dadgehek serbixwe di welatek demokratîk de, serokên wê ji ber encamdana wê cinayetê hatin mehkûmkirin. Bi kurtî Dezgeha Dad a Almanya bi rejîma dîktator a Komara Îslamî re ragihand, ne wisa ye ku bikare hespê cinayet, xedr û îxanet a xwe di cîhanê de bavjo. Encama biryara Dadgeha Mîkonosê bi eşkere nîşanî dunyayê da, bi curekê ku heta welatên Ewropayê jî nekarîn li hemberî rejîma Komara Îslamî dijkiryaran nîşan nedin û neselimînin ku nabe digel rejîmekê ku tu rêz, bal û giringiyekê nade mirovahî, mafê mirovan û civaka pêşketî, bikeve gotûbêjkirinê, divê her bi wî awayî bipeyivî ku ew rêjîm jê fehm dike. Li vir di cihê xwe de ye, em rêz û spas û pêzanîna bêdawî a xwe pêşkêşî Dezgeha Dad a Almanya û rêveberên Dadgeha Mîkonosê bikin ku nehêlan xwîna bi neheq rijandî a rêberên me di cinayeta Berlînê de heder biçe.

Em her ji destpêka hatineserkara wê rejîmê gihîştine wê encamê ku di feza û rewşekî tejî tundûtûjî û kuştinê de ku heta îro jî di Îranê de heye, tu pêşerojekî geş û ron ji bo tu kesî nahê dîtin, heta siya ew rejîma dîktator a kevneperest bimîne, jiyanekî asûde, azad û bêderdiser ne mumkine. Lewra nabe tu aliyek di wê guman û dudiliyê de bin û heta jinavbirina sîstema Komara Îslamî, divê tekoşînê bimeşînin, ji bo ku di nemana Komara Îslamî de yekem xelkê Îranê û bi taybet gelê Kurd de bikarin bigihin hêvî û xweziyên xwe.

***Hezar silav li canê paqij yê Dr. Seîd û hevalên wî***

***Miron û neman bo rejîma kevneperest û dijîgelî a Komara Îslamî***

***Serkevtî be xebata neteweyên Îranê bo gihîştin bi azadî û mafê neteweyî***

***Nefret û neman bo terorîzm û terorîstperweran***



# Çend Gotinên Binirx Yên Şehîd Dr. Şerefkendî Derheq Şêweyên Beşdarîkirina Xelkê Di Xebatê De

Agirî

"Erkê ciwanan ji hemûyan zêdetir e, ew in ku dikarin li serweyî hemûyan rolek baş bilîzin, ji komkirina nûçe û zaniyariyan li ser rewşa rejîmê û gihandina wan bi komîteyên hizbê û hêza pêşmerge ve bigre heya digihîje derbelêdan li dujmin.

Pêkanîna şaneyên biçûk li nav bajaran bo hevkarî û xebata rêkûpêk û bi bername, nivîsandina dirûşmên hander û dijî rejîma Komara Îslamî li ser der û dîwaran, peyakirin û belavkirina hin gotarên Radyo Dengê Kurdistana Îranê di nav xelkê de, belavkirina nûçeyên taybet bi xebata partiyê û hêza pêşmerge, xebat û tekoşîn bona baykutkirina caş û xwefiroşan û haydana kesên bêalî û goşegîr bo beşdarîkirin di xebatê de."

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Bila me hemûyan para xwe li beşdarîkirin di xebatê de hebe"*

"Ger mamosta mirovek şoreşvan û xwedî kesatî be, di kar û kiryarên rojane yên wê/î de derdikeve û ji bo şagird û qutabiyên xwe dê bibe mînak û sembol. Mamostayên Kurdistanê ger serê xwe bo rejîmê netewînin û di hember xwefiroş û alîgirên rejîmê de helwestek wisan bigrin ku jêhatî wan be, bêşik dê tesîr û bandorek pir baş li ser şagird û ciwanan hebin.

Ev kare bi dehan û bi sedan şêweyan ve ji aliyê mamostayên xwedî kesatî û şeref ve tê encamdan.

Mamosta berdewam tevî şagirdan dipeyvin û tiştan hînî wan dikin, lewre kê baştir ji mamostayek xwedî şeref û şoreşvan, dikare şagirdan bi bîr û baweriyên şoreşvanî bielimîne û wan ji bo kar û kiryarên şoreşvanî û welatparêziyê hay bide?"

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Çend peyvek bi mamostayên Kurdistanê re"*

"Ger her kes bi her awayekê nekare li refên Partiya Demokrat û mil bi milê pêşmergan, jiyana xwe di xizmet xebata azadane û qehremanane de danîne, lê alîkarîkirin bi şoreşvanên Partiya Demokrat û Pêşmergeyên qehreman yên vê hizbê kiriye.

Kesên şoreşvan û rastîn, bi başî dikarin tevî kesên wek xwe bi hevre û bi awayek rêxistinî, rêxistinan çê bikin û li gor îmkanatên xwe bixebitin heta ku li dema xwe û di derfetek jêhatî de pêwendiyê bi partiyê re bigrin û bi fermî û yekcarî tevlî refên partiyê bibin. Bila li gund û bajarên vê Kurdistana pan û berîn de bi sedan û bi hezaran şaneyên


Şehîd Dr. Sadiq Şerefkendî

biçûk û mezin, şibê şaneyên hizbê bi îbtikar û ji aliyê wan kesên şoreşvan û xwedî hest ve pêk werin û wê xebat û têkoşînê bimeşînin ku şane û rêxistinên partiyê divêt bimeşînin."

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Ji bo xebatê çi zêde ne? Rê!"*

"Tevger û bizav ji bo derketin di bin nîrê bindestî û dagirkeriyê de, erkê hemû xelkê Kurdistanê û hemû Kurdek xwedî şeref e. Lê eva jî vê wateyê nagehîne ku metoda vê beşdariyê ji bo hemû kasê wekhev e. Bi awayekî din, her kes xwe bi Kurdek xwedî şeref û welatparêz dizane, divêt di vê tevgera pîroz û îroyîn a me de beşdariyê bike. Lê her kes bi şêwe, şiyan û îmkanatên xwe. Tevgera Kurdistanê vê gavê li pileya herî bilind a xwe ku xebata çekdarî ye, dimeşe. Metoda xebata çekdarî di heman demê de ku pîroztirîn û girantirîn metoda xebatê ye, herwiha bi metoda herî dijwar ya xebatê jî tê hesibandin. Lewra erkê her kesî ye ku di vê tevgerê de beşdariyê bike (Diyar e hemû kes nikare bi awayê çekdarî erkê xwe bicî bigehîne)"

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Cihê taybetî yê her kesî di xebatê de"*

"Hêza sereke û bingehîn ya tevgera îroyîn ya Kurdistanê ji hêza xelkê pêk hatiye, anku piştevaniya xelkê ji tevgerê. Tevgera Kurdistan û Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê wekî birêveberê vê tevgerê, heya piştevaniya xelkê ya bi vî şeklê niha li pişt be, ne tenê her qahîm û şidyayî dê di qada xebat û tekoşîna her çiqas dijwar û giran de raweste, belku dê serbikeve jî. Hêza xelkê, hêzek bêdawî ye. Lewre em dikarin piştrast bin ku serkevtin û gihîştina bi armancê (azadîyê) hetmî û misoger e. Bi mercekê ku ev hêza her di qad û çepera xebatê de be, anku piştevaniya giştî a xelkê ji hizbê û tevgerê her dom bike."

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Hêza bingehîn ya tevgerê"*

"Divêt em bixebitin ku li her cihekê, di gund û bajar, mizgeft û şeqam, xwendigeh û yarîgeh, nexweşxane û îdare, kargeh û hemû cihên giştî de her kes li gorî şiyan û îmkanên xwe di pêxema azadî û bexteweriya gelê xwe de erkê xwe birêve bibe û encam bide."

*Beşek ji gotara Dr. Şerefkendî li jêr navê: "Bila para me hemûyan li beşdarîkirina di xebatê de hebe"*

"Şêweyên xebata neçekdarî bi qasê mirovan û bi qasê zirûfên curbicur reng bi reng in û diyarîkirina wan pêştir û ji aliyê me ve ne mumkine.

Lê hin usûl û pirensîp hene ku giştî ne, li berçavgirtin û birêvebirina wan ji bo hemû kesê yan aliyê kêm piraniya xelkê di gellek rewş û zirûfan de digunce."

# 28 Milyon Nexwendewar, Encama 30 Sal Desthilatdariya Rejîma Îslamî Li Îranê



Hemîd Muxtarî

Şiyana xwendin û nivîsîna hevwelatiyan ji girîngtirîn mercên pêşkevtina civak û welatan di hemû warên aborî, siyasî, civakî û çandî de tê hesibandin. Piraniya welatên ku îrorojê zanistên aborî, pîşesazî, bijîşkî di nava destê xwe de qorix kirine û xwediyê zanistên han in, pirsa nexwendewariyê heya astek zêde çareser kirine û renge ji sedî 3 yan 4 a nifûsa nexwendewar di wan welatan de hebe. Lê pirraniya mirovên nexwendewar di walatên cîhana sêyem de akincî ne.

Helbet pênaseya xwendewarbûnê ji welatekê bo welatek din bi ferq û cuda ye. Bo mînak di welatên Ewrûpî de kesên ku şiyana nasîna tîpan û xwendina hevokên hêsan hebin, lê fehmkirina mijarên hêsan ên rojnameyan ji wan re dijwar û zehmet be û zaniyariyên xwe ji rêya xwendinê ve bi dest naxin, nexwendewar tên hesibandin.

Lê di hinek welatan de kesên ku bikarin navê xwe binivîsin û hejmaran ji hev cuda bikin û ji wan fehm bikin û şiyana îmzakirinê hebin, xwendewar tên hesibandina.

Di welatê Îranê de her kes ku qonaxa destpêkî a xwendinê bi dawî anîbe, xwendewar tê hesêb.

Lê ger em heta xwendewarbûnê li gor pênaseya rejîma Îranê jî qebûl bikin, mixabin di welatê me de bi milyon kes nexwendewar hene. Elî Îbrahîmiyan, Cîgirê Perwerdeya Bizava Hînkirina Xwendinê (Nêhzetê Sewadamûzî) salek beriya niha ragihand ku di Îranê de hejmara kesên nexwendewar û kesên ku xwendewariyek kêm hene, 28 milyon kes in.

Herçend ku 30 sal bi ser temenê Komara Îslamî a Îranê re derbaz bûye, lê vê rejîmê hêj nekariye rih û rîşeya diyardeya nexwendewariyê di Îranê de ji holê rake.

**Lê çima heya niha jî pirsa nexwendewariyê di welatê me de çareser nebûye?!**

Li gor Daxuyaniya Cîhanî a Mafê Mirovan û Peymannameya Aborî, Civakî û Çandî, mafê xwendinê ji her mirovekî/ê re rewa û berheq e û divêt dewlet gişt pêdivî û hewcedariyên xwendinê ji bo hevwelatiyên xwe dabîn bike. Îran jî yek ji wan welatan e ku Daxuyaniya Cîhanî a Mafê Mirovan îmza kiriye.





Herwiha di Qanûna Bingehîn a Komara Îslamî a Îranê de, çend caran li ser vê pirsê tekez hatiye kirin, wek esla 30 a Yasaya Bingehîn a Komara Îslamî ku dibêje: "*Erkê dewletê ye ku gişt pêdiviyên perwerde û hînkirinê bi awayekî belaş heya qonaxa navendî a xwendinê ji bo gişt xelkê Îranê dabîn bike.*" Lê ne tenê ev esla, belku gellek esl û bendên din jî di Yasaya Bingehîn a Komara Îslamî a Îranê de hene û hatine pejirandin ku piştî derbazûna 30 salan hêj neketine qonaxa cîbicîkirinê. Yek ji wan, esla 15 a Yasaya Bingehîn e ku dibêje: *"Zimanê fermî di welatê Îranê de zimanê Farsî ye û gişt sened û belge û pirtûkên xwendinê divêt bi vî zimanî be, lê li kêleka zimanê Farsî bikaranîna zimanên herêmî di çapemeniyan û herwiha xwendina wan di dibistanan de azad e.*' Eslek ku hêj cîbicî nebûye. Dema ku berpirsên rejîmê di vê derbarê de dikevin ber rexneyan ku çima hûn vê eslê ku we bi xwe pesend kiriye, cîbicî nakin, dibêjin: *"Perê dewletê kêm e û em nikarin budceya wê dabîn bikin"*. Her bi vê sedemê salane bi hezaran zarokên netewên cur bi cur ên Îranê: weke Kurd, Ereb, Azerî, Turkan, Belûç û... seba nasiyarnebûn û dijwarbûna zimanê xwendinê ji wan re ku zimanê Farsî ye, dest ji xwendinê berdidin û ji dibistanan direvin. Ev yek jî dibe sebebê jordeçûna asta nexwendewariyê di welatê me de. Ji aliyekî din ve hejmarek zêde ji dibistanên Îranê, nemaze ên gundan ji pirraniya îmkanatên xwendinê bêpar in û ji sedî 60 ji avahiyên xwendingehan neqahîm û nestandard in û hewcehî bi çêkirinek nû hene û berpirsên Wezareta Perwerdeyê vê kêmasiyê vedigerînin ser kêmbûna budceya wezaretê.

Eva jî di demekê de ye ku Îran salane bi milyar dolaran pere ji rêya firotina niftê bidest dixe. Lê mixabin seba siyasetên şaş ên rêberên rejîma Komara Îslamî a Îranê di asta navxwe û dereve de, aboriya welatê me tûşî kirîzek mezin hatiye û rejîma Komara Îslamî budceya salane a welat ku diviya ji bo pêşxistin û geşekirina welat were xerckirin, zêde ji bo kirîna çek û alavên leşkerî û piştevanîkirin ji terorîzma navnetweyî û destavêtin di karûbarê welatên cînar de bikar tîne. Ev yek jî bûye sebeb ku welatê me tûşî belengazî û xizaniyê bibe û gellek malbat jî seba jordebûna nirxa hewcedariyên xwendinê weke pirtûk, defter, pênûs, kincên dibistanê û... nikarin ji zarokên xwe re dabîn bikin û wan bişînin xwendingehan, lewra neçar dimînin ku wan ji xwendinê bêpar bikin û bona hevkarîkirin ji bo dabînkirina debara jiyanê wan li ser karekê dadimezirînin.

Helbet hejmara kesên nexwendewar ji Parêzgehekê bo Parêzgehek din bi ferq e. Bo mînak li gor gotinên berpirsên Bizava Hînkirina Xwendinê, zêdetirîn hejmara kesên nexwendewar di parêzgeha Sîstan û Belûçistanê de ye û parêzgeha Tehranê jî xwediyê zêdetirîn hejmara kesên xwendewar e. Helbet rewşa parêzgehên Kurdakincî jî di warê pêdiviyên xwendinê de ji parêzgeha Sîstan û Belûçistanê baştir nîne, bi taybet li gundên Kurdistanê rewşa xwendigehan pirr xirabtir e. Ev jî vedigere ser îdeolojiya rêberên Rejîma Komara Îslamî a Îranê ku bawer in ger kesek îdeolojiya rejîma Îslamî qebûl neke û piştevaniyê ji vê rejîmê neke, ne ji wan e.

Şagird û xwendekarên kurd li Îranê di vê sîstemê de û li gor wan normên nebaş îsal jî çûn dibistan û navendên xwendinê. Em ji wan re hêviya serkevtinê dixwazin.

Doma rûpela 6'án...

berevanîkirin tevî rejîmê û pîlanên wê jî dikeve stûyê wan, ji ber ku rê nedn rejîma Îslamî bigîje armancên xwe.

Di vê derbarê de yekdengî û yekgirtina şagird û xwendekaran bo diyarîkirina her cure tevgerek nerazîbûnê û betalkirina pîlanên rejîmê yek ji fakterên sereke ên serkevtina şagird û xwendekaran e. Di vê derbarê de piştevanîkirina mamostayan ji meşa nerazîbûna şagird û xwendekaran hem erkek azadîxwazane ye û hem tevgera han giştgîrtir dike. Herwiha erkê ragihandinên serbixwe hem di navxwe û hem li derveyî welat de ew e ku her cure tevgerên nerazîbûna şagird û xwendekaran bigihînin raya giştî û xelkê ji wan bûyeran agahdar bikin. Erkê dê û bavên şagird û xwendekaran û bi giştî çîn û qatên cur bi cur ên xelkê jî ew e ku ji bo hevxemîkirin tevî zarokên xwe û pêşeroja wan, hevdengê wan bin.

**Şagird û xwendekarên xweştevî ên Kurd!**

Hûn weke ciwanên xwendekar û xwendewar ên Kurd ku xincî daxwazên senfî, daxwaza demokrasî û mafê netewî jî dikin, pitir ji hevsenfiyên xwe ên din li seranserê Îranê di bin zilm û zordariya duqat û tepeserkirina çend qat zêde de ne. Lê dîsan jî hûn herdem di refa herî pêş a xebat û tevgerên nerazîbûnê de bûne û di vê derbarê de we erkê xwe bi başî bicih aniye. Çavnihêriya me ji we ev e ku hûn wek caran û heta zêdetir ji berê li ser pêvajoya bûyeran bi bandor bin û xebatê bikin. Di her cure meşeke nerazîûnê de deng û daxwazên xwe ên Kurdayetiyê bilind bikin û renge ewa di gişt hereketên we de diyar be.

Hewce ye ku hûn di roja 23'ê Îlona îsal de ku destpêka sala nû a xwendinê ye, bi kincên Kurdî di xwendigeh û zanîngehan de amade bin û nîşan bidin ku dixwazin îsal bi vî şêweyê xwendina xwe destpê bikin. Hûn ji xwendina bi zîmanê dayikê ku mafê we yê berheq e hatine bêparkirin, lewra divêt hûn ji her derfetekê mifahê bistînin û bas ji daxwazên xw bikin. Bi nivîsandina dirûşman xwestek û daxwazên Kurdan li navendên xwendinê û heta veguhastina wan bo cihên giştî bidin xuyakirin, berdewamiya xwe ji xebat bo daxwazên mirovî û tekezkirin li ser wan nîşan bidin, remaze serkevtina xwe bi ser rejîma Komara Îslamî di Îranê de, di xwendin û xwepêgihandinê de bibînin.

Pîlanek din a rejîma Komara Îslamî a Îranê bo şagird û xwendekaran, perwerdekirina kesên xwefiroş û besîcan e. Dezgehên tepeserkar ên rejîmê berdewan hewl dane ku bi dana hinek îmtiyazên demkî û bê biha şagird û xwendekaran ber bi karê sîxorîkirin li dijî gel û netewa wan rabikişînin û bi vî awayî şagird û xwendekaran li ser yek û lidijî xelkê bikin sîxor û atmosferek pir ji tirs û bêbaweriyê di nava wan de pêk bîne.

Di vê derbarê de hişyarbûna şagird û xwendekaran dikare di betalkirina pîlanên rejîmê de bi bandor be.

Di vê derbarê de û di derheqî gişt kar û barên xwendin û hînkirinê de, rola mamostayên dilsoj û welatparêz herdem beçav û bi bandor bûye. Em hêvî dikin ku bandora han, îsal jî pitir ji salên berê bigihe encamê û weke şêwazek ji xebata li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê bê temaşekirin. Eva xizmetek e ku herdem li ber çav e û qet nahê jibîrkirin.

Hewce ye ku dê û bav zêdetir ji berê li hember ew pîlnên ku rejîmê bo zarokên wan darêtiye û birêve dibe, agahdar bin û rê nedin ku pêşeroj û çarenivîsa ewladên wan bi destê dujminên maf û azadiya Kurd bê diyarîkirin û di pêvajoya xwendinê de wan ji rêya rastîn û armanca sereke ku xwendin û hînbûn e dûr bixe.

Em hêvî dikin ku hemû aliyek bi çavek vekirî û hûrbînane ve binêre rastiyan û bîner û temaşakerê serkevtin û pêşveçûna şagird û xwendekaran di gişt waran de bin û şagird û xwendekarên Kurd jî wek herdem bibin sebebê serbilindî û şanaziya netewa xwe.

Carek din sala nû a xwendinê ji gişt şagird û mamostayan pîroz be.

**Partiya Demokrata A Kurdistana Îranê Deftrea Siyasî**
**31.06.1388**
**22.09.2009**



# Bikaranîna Madeyên Hişber Sê Qat Zêdeyî Geşekirina Nifûsa Îranê Bûye

**Agirî- Beşa Civakî**

Encamên lêkolînên ku bi dirêjahiya 10 salan berî niha hatine kirin, eşkere dike ku ji 20 salên derbazbûyî ve heya niha, geşekirina nifûsa Îranê ji sedî 2/63 bûye û hevdem bikaranîna madeyên hişber sê qat zêdeyî geşekirina nifûsa Îranê bûye. Herwiha bikaranîna madeyên sirker bi awayê tezrîqî (derzî lêdan) salane ji sedî 33 zêdetir bûye. Eva jî di halekê de ye ku aliyê kêm 6 milyon kes ji malbatên Îranî berbirûyê metirsiya bikaranîna madeyên hişber (bengdarî) ne.

Encama lêkolînan dide xuyakirin ku di 30 salên derbazbûyî de, asta bikaranîna madeyên bêhişker sal bi sal jorde çûye.

Bi dirêjiya salên 1979 heya 1999'an, ku dike 20 sal, bi awayekî navincî salane asta geşekirina bikaranîna madeyên hişber ji sedî 8 bûye, yan bi awayekî din aliyê kêm her 12 salan carekê 2 qat zêdetir bûye. Geşekirina han bi berawird tevî geşekirina nifûsa Îranê di wan 20 salan de ku her salê ji sedî 2/63 bûye, nîşan dike ku bikaranîna madeyên hişber sê qat zêdeyî geşekirina nifûsa Îranê bûye.

Herwiha encamên van lêkolînan dide zanîn ku bikaranîna madeyên hişber ji rêya derziyan ve di 10 salên borî de ji sedî 330 û bi awayekî navincî her salê ji sedî 33 xurt bûye.

Herçend ku di 30 salên derbazbûyê de pitir ji 11 milyon kes ji ber firotin û bikaranîna madeyên sirker hatine girtin û pitir ji 10 hezar milyar tûmen xesar ji aboriya welatê Îranê ketiye. Herwiha salane bûyerên lihevketina otombîlan ji sedî 15/5 heya 16/5 jî seba kişandina madeyên hişber e. Li kêleka kirîzên weke bêkarî, hestkirin bi nebûna ewlehiya takekesî di civakê de, awsan (enflasyon), madeyên bêhişker jî yek ji van kirîzan tê hesibandin ku zirar û xesarên herî zêde gihandiye civaka me.

Hebûna 2 milyon kesên tûşbûyî bi madeyên hişber û berbirûbûna pitir ji 6 milyon kes ji endamên malbatan tevî metirsiya tûşbûn bi madeya han û geşekirina guhertina bikaranîna madeyên sirker ji tiryakê ve bo madeyên din ên weke şûşe û kirak û... bi qasê ji sedî 42, hemû nîşaneyên sernekevtina xebata li dijî bengdariyê ne ku gefê ji saxlemiya ruhî û rewanî ya civaka Îranê dike.

Lêkolînên cîhanî eşkere kirine ku gellek ji xelkê bawer in, armanca yekem û sereke a dewletê divêt pêkanî şadî û keyfxweşiyê be, nek dirav û dewlemendî. Ev jî di halekê de ye ku pirraniya karnasan li Îranê nigeranê jordeçûna asta xemokî, nerehetî, kul û kovan û hêrsbûna xelkê û herwiha jêrdehatina asta keyfxweşî û şadiya xelkê di cewa siyasî, civakî a civakê de ne. Ev yek jî rasterast tevî bikaranîna madeyên hişber girêdayî ye.

# MAF Û BERPIRSIYARÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Her heyîn li gorî merc û derfetên xwezayê jiyana xwe didomîne. Ango merc û derfetên ku hene bandorê li ser jiyana biyolojîk a heyberên jîndar dike. Û heyberên (heyînên jîndar) ku bi van şert û mercan re ne li hev bin jî tu carî nikarin jiyana xwe bikudînin.

Tiştê ku jîndarên xwezayê ji wan şert û mercên yekalî û nelihev reha dike jî taybetmendiya wan a guherbar e. Heyîn û heyberên ku ji bo guherandinê li ber xwe nedin, tu carî nikarin hebûna xwe biparêzin. Ji bo wê xweguherandin û veguherandin ji bo her heyînê jîndar şertê sereke ye.

Mirov jî wisa ye. Çi jiyana biyolojîk û çi jî ya sosyolojîk dibe, heke mirov xwe li gorî şert û mercên xwezayê neguhere û her wiha xwe li gorî jiyana biyolojîk û sosoyolojîk amade neke, tu carî nikare hebûna xwe bidomîne.

Di warê civakî de di navbera mirovan de gelek bûyerên ku dişibin hevdû hene. Belê ji aliyê din ve di navbera mirovan de cudayetiyên komelayetî, aborî, sincî, çandî û hwd hene. Hevhîkariya çandî encama diviyatiya jiyanê ye. Ji danûstandinên civaka seretayî(hoveber) bigirin û heta tevlîheviyên aborî, ramyarî û civakî yên îro, çand, wekî navgîna pêwendiyên mirovahiyê hatiye dîtin. Civak, kes û an jî takekesên ku zanîn û geşedaniyên gerdûnî pêk naynin, ango xwe li gorî demê nû nekin û xwe negûherînin dê gav di bin hikm û bandora kes û hêzên ku xwe nû dikin û diguherînin de bimînin. Di her dem û domanê de di navbera şêwaza merhaleya aboriya civakê û rêxistinên wê yên çandî de têkiliyek zexm xwe dide der. Şaristaniyên ku bi saya nirx û hêjahiyên ku bi ked û mêjiyê mirovahiyê pêk hatine li ser hîmê vê çandê ava bûne. Û divê ev nirx û hêjahiyên domdar û mayînde hemû wekî mîrateyên hevpar ên mirovahiyê werin dîtin û peşirandin. Her wiha divê bi azwerî û baldariyeke xurt werin parastin û geşkirin.

Divê mirovahî ji îro bi şûn de li ser lihevkirin û ahengdariya gerdûnî serê xwe biêşîne. Divê zanîn û zanyariya demê jî di suxreya vê lebatê de be. Beriya her tiştî divê zana û zanyarên demê, pirsgirêkên mirovahiyê yên gerdûnî, li gorî rê û rêbazên zanistî û bi mexseda aştî û aramiya mirovahiyê - ne li gorî berjewendiyên çîn û hêzên serdest – bipeyidînin, destnîşan bikin û li çareseriyê dagerînin.

Şaristaniya îroyîn, pevretî û yekbûniya mirovahiyê li ser hemû mirovên vê dinê dide ferzandin. Her ku tê, qada siyaset û bîrdozên civakî tevlîhevdû dibin. Îro ro pirsgirêk, êş û jan, fikr û hest, hizr û raman, dilxweşî û xemgîniyên mirovahiyê tev gihîştine hevdû. Bûyer û lêqewmînên dinê tevê mirovahiyê têkildar dikin. Xweşî û geşedaniyên gerdûnê, hemû civak û neteweyên dinê dilşad û şanaz dikin.

Gava ku mirovayî tê gotin, pêşî başî, qencî, rastî û duristî, hezkirin û rêzdarî, xêrxwazî û tiştên erênî tên bîra mirov.

Her wiha piştgirî û alîkariya kesên ku pêdiviya wan bi alîkariyê heye jî taybetiyeke mirovahiyê ye. Ango alîkariya bêberamber û berjewendî jî xisûsiyeteke qencî û mirovahiyê ye.

Gelek mirov bi hest û fikra ku başiyê pêk bînin, tevdigerin. Belê liv û tevger û helwestên wan her gav li gorî van hest û hizran pêk nayên. Tenê fikirîn û gotin tu carî têra pêkanîna armancê nake. Kar û kardarî divê. Mirov dikare bibêje ku her mirov xwe wekî mirovê/a herî baş û fêdewar dibîne. Ji bo wê jî hergav dixwaze fikrên xwe yên bîrdozî, ramyarî û hestiyarî li ser mirovên din bide ferzandin. Ango her kes mirovahiyê li gorî hest û hizrên xwe rave dike û bi qasî ku zane şîrove dike. Gelek caran jî li gorî berjewendiyên xwe diguhere an diedilîne.

Sedema lêkdan, şer û pevçûnên navbera mirovan jî bi vê egerê pêk tên. Lewre her kes xwe wekî xelaskar û rizgarkerê tevê mirovahiyê dibîne. Û tu kes şens û derfetê nade kesên ku xêra mirovahiyê dixwazin. Ji bilî xwe her kesî şaş û fahş dibînin. Qalib û qaydeyên xwe didin zorandin. Ji xwe pêv li tu kesî nafikirin. Gotina mirovan li cem wan tu pereyan nake. Ew, xwe wekî hakimê/desthilatdarê herkesî dibînin. Rê li ber her kesî û her tiştî digirin. Li kesî guhnadêrin. Bi ya xwe dikin. Şêwir û mêşêwira wan tune ye. Ji aqilê xwe razî ne. Tenê dijberiyê dikin. Tu fikra wan î ku bi civakê re parve bikin nîn e. Tenê rexneyan dikin(bi rastî ne rexne ye jî; rûxandin e)

Tu pîvang, wezn û qalibên ku mirov li ber deriyê çareseriyê deyne û bibêje tenê ev ji bo xelasî û aramiya mirovahiyê ye tuneye. Her mirov bi qasî hevdû binbar û berpirsiyar e. Bi qasî ku êş û janên mirovahiyê me diêşînin, xweşî, dilxweşî û aramiya mirovahiyê jî ew qasî me kêfxweş û şanaz dike.

Çawa ku her mirov, ji bo ku ji nîmetên (xurek û vexurekên) vê dinê sûdê wergirin, bi qasî hevdû xwedî maf in, her wiha ji bo çareserkirina arîşe û pirsgirêkên vê dinê jî dîsa bi qasî hevdû binbar û berpirsiyar in.

*Kaniya Helbestan*

## Kulîlkê Çema

**Mehmet Çobanoglu**



Bi kulîlkê devê çema me
û gul,sosinên çiyana me
Tim reng a reng vedidim
û warê welatê Kurda me
Ez per û baskê teyra me
Ser erd û bi asîmana me
Şikeft,stargehê bê kesan
Ez welatê gelê Kurda me
Ez helînê çûk û çûika me
Hîm û bingehê zinara me
Li min tim kew bi kevokin
Ez germa dil'ê Kurda me!
Ez qîz û xortên çelengim
Ez şûr,mertal ez keleşim
Ez têkoşer bi hewldanim
Ez serîhildana Kurda me
Kevirên destê zarok a me
Dipekim bi ser polêsa me
Xof û tirs çîye? û nizanim
Bi dil û kurçîkê Kurda me
Ez pspor, lehengê we me
Zana û rewşenbîr we me
Nav ê min jî qasî dîrok e
û serokê gelê Kurda me

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

**Beşa 1**



Çiya Mazî

**Xwendevanên hêja yên Agirî,**

**Ji niha şûnde emê hewil bidin ku di kunc yan jî rûpelek taybetî ya Agirî de şiroveya gotinên pêşiyan ku ji aliyê mamosta û nivîskarê kurd, Çiya Mazî ve hatine amadekirin, biweşînin.**

**Ew şirove ji aliyê Çiya Mazî ve di pirtûkek bi navê ''Ferhenga gotinên pêşiyan'' de, him bi pîtên latîn û him jî bi pîtên erebî çap û belav bûye.**

**Di beşa yekem de emê ji destpêka wê dest pê bikin ku ji aliyê nivîskar ve hatiye amadekirin.**

**Pêşek**

Ev xebate dema ku min xwest tûrikê xwe î çanda Kurdî tije bikim, dest pê kiriye. Gelek kesan digotin; çanda Kurdî pir dewlemend e, lê bi rastî jî tiştên xuyayî pir hindik bûn. Ji ber wê yekê jî min xwest bibînim, ka çiqasî dewlemend e û ez bi çavên xwe bibînim, ka ev çand çi ye? Hilbet Kurd giş pir an hindik bi vê yekê zanin ku çanda Kurdî nehatiye nivîsandin û pir tişt jî bi peyvê li ser vê çandê têne gotin, lê bi piranî hewldan, ji bilî çend kesan pê ve nehatiye dayin ku bê nivîsandin. Di klasîkan de ev hewl xuya dibe. Mînak Helbestvanê mezin Cîgerxwîn hewl daye û ji bilî helbestan dest avêtiye zargotinê; ji ferhengan heta gotinan û dûrikan heta metalokan, hema bibêjin xwestiye hertiştî binivîsîne. Di dema me de jî pir kesan li Ewropa û li welêt dest avêtine ferhengên peyvan , ji vana ya herî dewlemend û hêja ya Enstîtuya Kurdî Stenbolê ye ku ji alî Hêja Zana FAQRQÎNÎ hatiye tomarkirin û weşandin.

Heta niha bi piranî, gotinên pêşiyan tenê bi rêzkirinê di pirtûkan de hatine weşandin, lê belê kesî wateya wan şîrove nekiriye û wekî ferhengê amade nekiriye. Bi baweriya min ev kêmasiyek bû û min jî dest avêt vê babetê. Bêgûman gelek kesan jî xwestiye li ser zargotinê bisekinin,lê ji ber bêderfetbûn û qedexeya li ser ziman, xebata gişan teng maye. Ev pirtûk jî ez bawer dikim bersiveke baş nade, lê ewê jî bibe yek ji wan berhemên ku rê li ber wêje û nivîsa Kurdî vekirine.

Hêmanên jiyanê yek jê jî ziman e, bingeha wêjeyê jî ziman e û herwiha ev herdu xal bigihêjin hevdû, ziman dibe jiyan bi xwe. Bingeha ziman jî zargotin e. Zargotin; gotinên pêşiyan, biwêj,dûrik, çîçirok, metalok û hwd. nin. Ji ber wê yekê jî, ji bo wêje û ziman bi pêş keve, divê zargotin derkeve holê û bê nivîsandin.

Îro em dibînin ku wêjevanên nûhatî, di bin bandora zimanên biyan û cîranan de dimînin. Helbest û çîrokên wan, xwendevanan baş bi xwe ve girê nadin. Sedemên vê yekê pir in lê ez bawer dikim yek jê jî ku haya wan ji zargotina zimanê wan tune ye. Ev berhem, ji wê yekê re jî dê bibe alîkar.

Ji ber ku di vê ferhengê de şîrove û nirxandinên li ser zargotinê û gotinên pêşiyan e, herwiha bûye wekî nirxandina li ser ziman. Ji ber wê yekê jî ez bawer dikim wê gelek çewtiyan rast bike û nîqaşên nû derxîne holê. Îjar mirov dikare bibêje; ev berhem îdiayek û dozînek li ser dewlemendiya zimanê Kurdî ye. Çawa xwendevanên zankoyan ji bo dawiya dibistanê an masterê, dozînan (tez ) amade dikin û nîqaşên nû derdixin holê, ez hêvî dikim ev jî wekî dê bibe destpêka nîqaşeke baş.

Min ev berhem di pênc salan de qedandiye. Dema min li Mêrdîn dest bi vê xebatê kir(1998), nivîsa Kurdî û xebatek wiha li welatê vê çandê qedexe bû. Ji ber wê yekê jî min pir zor û zahmetî kişandiye ji bo vê pirtûkê. Pêşî teknolojî; ku carinan li serê mirov dibe bela. Divê mirov baş karibe bikar bîne an na jî mirov pir hêsîriyê ji ber wê dikişîne. Du caran bi temamî dosyayên vê pirtûkê rûxiya nin û dû caran jî taba çar mehan bi erdê de çûye. Heta dawiyê ez dikarim bibêjim bi dizî ev xebat hatiye kirin. Hinek dikarin bibêjin " ma ev zargotin e çi pê ve ye?" lê di wê demê de mirovan ji bo ku digotin "ez Kurd im" dihatin kuştin. Him jî ev rewş li ber deriyê min bû. Di wê demê de, mirovan bi hêsanî ji cîranê xwe re û ji hevalê xwe re jî nikarîbû bigotana "spas". Ji ber ku "spas" peyveke sembola zimanê Kurdî bû. Ku mirov bigota "spas" , wê gavê dihat fêmkirin ku pêwendiyeke xwediyê wê peyvê bi dozine din re heye. Ku min ji kalekî peyvek dipirsî û şîrove jê dixwest , berî bersivê ji min re digot " tu ji bo çi van tiştana dipirsî?". Bawer bikin pir kêm caran min qala çand û wêjeyê ji wan re dikir. Ji ber ku ne bersiv didan û bi ser de jî ditirsiyan û dixwestin ji min bi dûr kevin. Ji ber wê yekê jî xebat pir giran dimeşiya û dirêj dibû. Herwiha teng jî dima. Di sê çar salan de û di rewşeke asayî de, mirov dikare sê ciltên wiha derxe holê, lê ev yek ji Kurdan re ne pêkan e , bi taybetî ji Kurdên an nivîskarên li welêt dijiyan ne pêkan bû. Di vê xebatê de tab û keda jinên Kurd pir e. Bi qasî ku alîkariya xanima min Mekîye û jinbira min Hedîye ji min re çêbû , tab û keda kesî çênebû. Di vir de ez wan û ji bo taba jin û dayikên Kurd spas dikim.

Ji bo çi min van tiştana got. Ji ber ku di vê zor û zahmetiyê de, bi tekuzî tu car çand û wêjeya Kurdî baş bi pêş nakeve. Ev yek ji 200 Sal berê û vir de wiha ye. Ji bo çi wêjeya Kurdî bi pêş neketiye jî ji vê yekê baş tê fêmkirin. Tevlî astengîyan jî çi ji destê kê bê divê bike û ne bi awayê sembolîk bi lêkolîn û xebatên kûr û berfireh.

Ez hêvî dikim ku ev berhem wê ji çand û wêjeya Kurdî re bi sûde be. Kêmasî û xeletî jî dibe ku tê de hebin. Di nivîsandina gotinan de min xwest ku ez şaşiyên wan sererast bikim li gor rêzimanê Kurdî, lê a yekê ji bo ku qaîdeyeke Kurdî î baş hê tune ye, ya duduyan jî, her gotinek bi awayekî ye û li her cîhekî bi awayekî tê şîrovekirin. Dema mirov li gor rêziman ji sedî sed sererast bike , dibe ku wate û melodî bê guherandin. Min ew hêz û erk bi xwe re nedît ku ez wan gişan li gor rêzimanê Kurdî biguherînim. Mînak Peyvên wekî ; Mirov,merû, merî, mêr û meriv pir hatine bikaranîn. Van peyvana her hinek li deverekê û bi heman wateyê hatine bikaranîn. Mirov nikare yekê tenê jî ji bo peyva (insan) bikar bîne û mirov nikare her yekê bi wateyekê jî bikar bîne. Ev yek jî ji min re û her wiha ji ziman re jî bûye astengî. Lê heta ji min hat ku ez wan nêzîkî rêziman bikim. Min di şîroveyan de bi piranî peyva "mirov" bikar anî. Hinek gotinên ku pir ji ziman bi dûr ketine û forma wan ji nezanî hatine guherandin, bêyî ku ji wate û melodiyê bidûr kevin, min ew guherandin. Heta ji min hat jî min xwest zimanekî yekgirtî bînim holê. Li alîkî din jî hinek gotin ji ber melodî û qalibbûna wan, heke hinekî dûrî rêziman bin jî,min ew neguherandin, heke bihatana guherandin balkêşiya wan jî nedima.

# Kî Sebebkarê Tundûtûjiyê Ye?

## *Bersivek ji bo Rêxistina Berevanî ji Mafê Mirovan li Kurdistanê*



**Selah Muradî**

Rêxistina Berevanî ji Mafê Mirovan li Kurdistanê (RMMK) li jêr navê **'bila partî û grûpên Kurd ji tundûtûjiyê xwe biparêzin'**, ligel tometbarkirina PDKÎ û çend rêxistin û aliyên din bi bikaranîna **'tundûtûjiyê'**, daxwaza ji wan kiriye ku " ji destbirin bo her cure kiryarekî leşkerî an çirîkî ku derfetê ji bo êrîş bo ser mafê mirovan û binpêkirina berfireh a wan mafan bi taybet bo aliyê hember pêk tîne, xwe biparêzin."

Mafê RMMK ye ku li hember her 'tundûtûjiyekê' ku bibe sedema binpêkirina mafê mirovan, helwêstê bigre. Lê mixabin di wê daxuyaniya îşarepêkirî de, RMMK tûşî şaşiyê bûye û ne tenê sebebkarê eslî û bingehîn yê 'tundûtûjiyan' li Kurdistanê ji bîr kiriye, belku wisa nîşan daye ku ew partî û rêxistinên Kurdistanî ên dijberên Komara Îslamî ne ku 'tundûtûjiyê' pêk tînin. Ev yek şîrove û berhevdana hinek binav lêkolînvan û rewşenbîrên Kurd tîne bîr û fikra mirov ku hebûna partiyên Kurd wek sebebkarê paşketina Kurdistanê û qirkirina xelkê Kurdistanê ji aliyê rejîma Meleyan dizanin û wilo didan xuyakirin ku rejîma Komara Îslamî a Îranê di reftar û siyasetên xwe de li hember xelkê Kurdistanê û daxwaziyên wan tu şaşî û tawanek nekiriye.

PDKÎ herdem di wê baweriyê de bûye ku pirsa Kurd li Îranê rêçareya leşkerî tune û ne Kurd ji wê rêyê ve dikarin Rejîma Meleyan bihiloşînin û ne ew rejîma jî ji rêya 'tundûtûjî', kuştin û qirkirin û wd... dikare Kurdan teslîm bike. Lewra PDKÎ li ser çareseriya pirsê bi rêya **'gotûbêj'** û **'aştîxwazane'** ve tekez kiriye. PDKÎ her ji



***Belgeya herî mezin jî bo aştîxwazbûna PDKÎ û şerxwazbûna Komara Îslamî, gotûbêja navebra şehîd Dr. Qasimlo, Sekreterê Giştî yê partiyê û nûnerên vê rejîmê li Viyen, paytexta Otrîşê di sala 1989an de ye ku di wan gotûbêjan de rejîma Meleyan ji 'gotûbêj'ê bo 'teror'a Pêxemberê aştiyê mifah wergirt***

destpêka hatinserkara Komara Îslamî di çarçoveya şanda nûneriya Kurd de, rêçareya **'gotûbêjê'** hilbijart.

Partiya Demokrat ya Kurdistanê di rêya çareserkirina pirsa Kurd de bi awayekî aştîxwazane, digel Komara Îslamî gotûbêj kir, lê Komara Îslamî her wek di axaftinên Xomeynî û Pasdar Çemran de derket holê, bi armanca bidestxistina hêz û derfet bo qirkirina Kurdan û binpêkirina daxwaziyên wan, rêya **'gotûbêj'**ê hilbijartibû. Di wê serdemê de Çemran radigehîne ku divê em ji '**gotûbêj**'ê bo '**qirkirin**'a Kurdan mifahê bistînin, yan Xomeynî dibêje: di destpêkê de wan dorpêç bikin, piştre bi wan re gotûbêjê bikin. Di wê demê de ku PDKÎ digel Fetwaya Cîhad a Xomeynî û êrîşa hêzên çekdar ên rejîmê bo ser xelkê sivîl û bêberevan yê Kurdistanê û mafê rewa yê Kurd rûbirû bibû, rêya berxwedan û parastina xelkê Kurdistanê li hember êrîşên rejîma Komara Îslamî hildibijêre. Ev helwêsta PDKÎ diçe çarçoveya **'berxwedana rewa'** û mafê hemû takekes, civat û partiyekê ye li hember êrîş û destdirêjî ya dagirker berevaniyê ji xwe bike û xwe biparêze. Ligel berdewambûna siyaseta rejîma Meleyan li hember pirsa Kurd, wate mifahstandin ji 'gotûbêj'ê bo qirkirina Kurdan, PDKÎ wek berê dubare li ser çareserkirina aştîxwazane a pirsa Kurd pêdagirî kir. Belgeya herî mezin jî bo aştîxwazbûna PDKÎ û şerxwazbûna Komara Îslamî, gotûbêja navebra şehîd Dr. Qasimlo, Sekreterê Giştî yê partiyê û nûnerên vê rejîmê li Viyen, paytexta Otrîşê di sala 1989an de ye ku di wan gotûbêjan de rejîma Meleyan ji '**gotûbêj**'ê bo '**teror**'a Pêxemberê aştiyê mifah wergirt.

Heyamekê berî niha tîmek ji Pêşmergên PDKÎ bo rêvebirina karûbarê rêxistinî vegeriyabûn ser axa bav û kalên xwe. Piştî ku rejîma Komara Îslamî ji hebûna wê tîmê di herêmê de agahdar dibe, bi hêzek gelek mezin êrîşê dike ser tîmekî 4 kesî û mixabin her çar xebatkarên PDKÎ piştî du rojan berxwedan û xweparastinê qehremanane şehîd bûn.

Wan pêşmergan êrîş nekiribû ser tu paygeh û organekî rêjîma Komara Îslamî û tenê bo berevanî ji can û jiyana xwe çek bikar anîbûn. Lê mixabin ji aliyê Rêxistina Berevanî ji Mafê Mirovan li Kurdistanê ve ne tenê Komara Îslamî wek sebebkarê tenê yê pêkhatina '**tundûtûjiyê**' di Kurdistanê de nehatiye mehkûmkirin, belku wan bi bikaranîna 'tundûtûjiyê' tometbar dike.

Di vê derbarê de hewce ye RMMK bi awayekî hûrbînane helwêstê bigre, ger nikare di helwêstên xwe de tenê sebebkarê 'tundûtûjî'yan (Rejîma Meleyan) mehkûm bike, aliyê kêm PDKÎ ku nirxên herî mezin bi sedema 'tundûtûjî'yên rêjîma Komara Îslamî daye, bi bikaranîna 'tundûtûjiyê' tometbar neke.




***pêşmergan êrîş nekiribû ser tu paygeh û organekî rêjîma Komara Îslamî û tenê bo berevanî ji can û jiyana xwe çek bikar anîbûn***

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com

## Ehmed Turk: Ger Destûr Neyê Guhertin Çareserî Ne Mimkûn E



Li gor agahiyên ku malpera Rûdawê belav kirine, Hevserokê DTPê Ehmed Turk ragehand ku ji bo çareseriyê çavên hemû welatên cîran li Tirkiyê ye û ji bo ku vebûna demokratîk a hikumetê pêk bê, divê yasaya bingehîn bête guhertin û got: "Lê heta destûr neyê guhertin, ne mimkûne pirsgirêk bê çareserkirin. Ger Destûr neyê guhertin, sibê dê hinek kes bi sedema li dijî destûrê ye doz; vekin û dê wek çekekê bikeve destê van derdoran."

Ehmed Turk li Navenda Giştî ya DTPê pêngavên di derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd de nirxandin. Turk da zanîn ku dixwazin Kurd û Tirk bighin azadiyê û nasnameya Kurdan bê naskirin. Turk wiha axivî: "Ev daxwaza me ne tenê ji bo Kurdan e. Dema demokrasî bi pêş keve, Turk jî dê bighin azadiya xwe. Çavê welatên Rojhilata Navîn li Turkiyê ye. Ger Turkiye bo demokrasiyê gavan bavêje, dê bandoreke erênî li welatên cîran jî bike. Çavê siyaseta Fars, Kurd û Ereban li pêngavên Turkiyê ye. Divê Tirkiye ji bo demokrasî û aştiyê gavan bavêje. Têkoşîna me ya demokratîk ya bi salan dê bandoreke mezin li ser azadiya gelan bike. Bi polîtîkayên asîmîlasyon, jinavbirin û înkarê gel nabin bira. Me bi salan ev yek got û derket holê. Ji ber vê yekê pêwîstî bi siyaseta demokratîk û aştiyane heye. Baweriya me ev e û dê Tirkiye bi vêna bihêz bibe."

**'Heta Makezagon neguhere çareserî nabe'**

Ehmed Turk wiha dirêjî bi axaftina xwe da: "Ne tenê çareseriya pirsgirêka Kurd, heta Destûr neguhere gavên demokratîk jî nayên avêtin. Destûra 12ê Îlonê li pêşiya me asteng e. Divê Tirkiye siyaseteke cuda, pir reng û pir deng bimeşîne. Me di serdana xwe ya Îraqê de dît çavê hemû kesî li Tirkiyê ye pirsgirêka Kurd çareser bike. Ger Tirkiye pirsgirêkê çareser bike wê Îran û Suriye jî sûd jê wergire û demoqratîk bibe."

## Bikaranîna Înternetê Li Îranê Hatiye Dijwarkirin



Li Îranê bikaranîna înternetê bi giştî dijwar e û hêza wê gellek jar û lawaz e û pirr malper nahên vekirin, ji ber ku dewlet wan filter dike.

Di pêvajoya xwenîşandanên îsal ên Îranê de heta niha, şebekeya înternetê li Îranê gellek lawaz bûye û bikaranîna wê hatiye astengkirin. Rayedarên hikûmetê ji gihandina nûçe û zanyariyên derbarê rewşa hundirê welat bo medyayên derveyî Îranê, herî zêde ji bikaranîna înternetê ditirsin, lewra bikaranîna wê asteng dikin.

## Bi Kêmî 200 Kes Ji Naraziyên Xwenîşandanên Roja Înê Hatin Girtin


© AP

Piştî meşa neraziyên çend sed hezar kesî yên xelkê bajarê Tehranê di roja Quds de û herwiha êrîşa hêzên dijî şoriş ên Komara Îslamî a Îranê, bo ser xwenîşanderan, bi kemî 200 kes hatin girtin.

Nûçegihaniya "Amir Kabir" di vê derbarê de ragihand, hejmarekî zêde ji malbatên wan girtiyan bo agehdarbûn li ser rewşa endamên malbatên xwe, di çend rojên borî de li hember dadgeha şoriş û girtîxaneya Êvîn a bajarê Tehranê civiyan.

Wê çavkaniyê da zanîn, raporên din behsa girtina dehan kes ji welatiyên li bajarê din ên Îranê, ji wan bajarê Şîraz û Tewrêzê dikin.

## Yekîtiya Ewropayê Axavtinên Ehmedînejad Derbarê Holokastê Şermezar Kir



Yekîtiya Ewropayê roja 20'ê Îlona 2009'an, daxuyaniyek da çapemeniyê û înkarkirina dubare ya Holokastê ji aliyê Ehemdînejad ve mehkûm kir û ji rêberên Komara Îslamî a Îranê xwest ji bo cihgirbûna aştî û ewlehiyê di herêma Rojhilata Navîn de hewlê bidin. Welatê Swêdê ku serokatiya dewreyî a YE'ê li stû ye, di wê daxuyaniyê de gefên Ehmedînejad di roja îna borî derbarê tunekirina Îsraîlê jî şermezar kir.

Çend welatên Ewropayê bi cuda jî axavtinên nû ên Mehmûd Ehmedînejad derbarê înkarkirina cinayeta Holokastê mehkûm kirin.

## UNICEF: Divê Mafên Zarokan Bikevin Nava Qanûnên Bingehîn Ên Welatan




Rêxistina UNICEF ser bi Neteweyên Yekbûyî daxwaz kir ku mafên zarokan bikevin nav Qanûna Bingehîn a welatên cîhanê û bi vê pêvajoyê, xizanî û belengaziya civakî û karkirina zarokan, êşandina û tundûtûjî li dijî zarokan were bidawîanîn. Binpêkirina mafên zarokên di şeklên jor di gellek welatên cîhanê de dimeşe, lewra UNICEFê wê mîkanîzma çareseriyê pêşniyar kiriye.

Li gor raporên Neteweyên Yekbûyî, du milyar û 200 milyon zarok di cîhanê de dijîn ku ji her du zarokan yek ji îmkanên standard ên jiyanê bêpar in. Hewcedariyên wekî xwarin, ava paqij, alîkariyên bijîşkî, perwerde û malek aram. Kirîza aborî a cîhanê jî, xizanî û belengaziya zarokan zêdetir kiriye.